> Saddam hewl da ku bombeya atomî ava bike



Serfermandarê Artêşa Îraqê yê berê Nizar Xezrecî, li mala xwe ya li bajarê Kopenhagenê ji rojnamevanê Lubnanî Xesan Şerbel re axivî û gelek mijarên derbarê serdema Saddam zelal kirin. Xezrecî bibîrtîne ku Saddam pir ji Stalîn hezdikir û xwe di herêmê de wek serokê herî bi hêz didît û hewldabû xwe ku bombeya atomî ava bike. Xezrecî dibeje ku hêzên komarê bê agahdariya wî Kuweyt dagir kirin û dide zanîn ku Saddam, Elî Hesen Mecît û Huseyîn Kamîl ji bombebarana Helebcê berpirsyar in. ▶7


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin




پاش جیابوونەوەی لە هاوسەرەکەی

**دیزاینەرێکی (رووداو) خۆی خنکاند** ◀ 10


**Deutschland 1,50 Euro** | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK **Hejmar / Nr. 55** | 27 Tîrmeh / Juli 2010 | **www.rudaw.net** | **info@rudaw.eu**


# Kurdên Îslamî çareseriyê dixwazin

Bo cara yekê hejmarek mezin ya rewşenbîr û saziyên Îslamî yên Kurd li Amedê civiyan û ji dewleteke serbixwe heta federasyonê mafên Kurdan nirxandin. ▶2




Wêne: Rûdaw

Mehmet Pamak yek ji 30 rewşenbîran bû ku di "Forûma Pirsgirêka Kurd" de axivîn

Wezîrê Herêma Kurdistanê Hewramî:

## Kurdistan petrola xam naşîne Îranê

Wezîrê Çavkaniyên Siruştî yê Herêma Kurdistanê, Aştî Hewramî, bi rêya Rûdawê îdiayên ku ji Kurdistanê petrola xam bo Îranê tê şandin red kirin û bang li wan kesan kir ku yan îdiayên xwe bi dokumentan îspat bikin, wekî din ew dej ji sergêjkirina welatiyan berdin: "Dema dibêjim me nekiriye, nayê wê wateyê ku ew ne mafê me ye." Hewramî dibêje ku ew ji mafên xwe yên destûrî zêdetir naxwazin lê ji wan kêmtir jî qebûl nakin.

Derbarê projeyên ku wezareta wan pêk anîne, Aştî Hewramî daxuyand ku wan elektrîka Kurdistanê baştir kiriye û niha jî ji bo alîkarîkirina berhemanîna elektrîkê û sivikirina buhayê wê li ser hevwelatiyan, ew bêyî pere gazoil û gaza şil didin santralên elektrîkê. ▶3

**Amed - NBA**

Kurdekî ji tîma Yildiz a Amedê derbasî lîga NBA bû ▶15

**Dilşad Seîd**

Projeya wî ya akademiyeke mûzîkê heye, lê pêk nayê ▶9

**Kurd bawer nakin**

Beşar Esed dibêje Kurd beşeke sereke ya civaka Sûriyê ne ▶4






4 191631 701506 00031

9 771869 104000 30

Great Britain

# Kurdên Îslamî doza mafên Kurdan kirin

Bawer Çem Amed

Nûnerên sazî û dezgehên sivîl û şexsiyetên navdar ên ku bi ramanên xwe yên Îslamî li pêş in, ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd civiyan. Di civîna ku 30 rewşenbîrên Îslamî axivîn de, ji dewleteke serbixwe heta federasyonê, mafên Kurdan hatin nirxandin.



Di forûmê de gelek aliyên Îslamî yên cude amade bûn



Doç. Dr. Ahmet Yıldız li gel rêvebirekî komela Özgür-Der'ê

## Kurd ji dîn hatin derxistin

Şaxa Komeleya Ramana Azad û Mafên Perwerdehiyê (Özgür Der) ya Amedê, bi beşdariya gelek kesên ji fraksiyonên cuda yên Îslamî, forûmeke du rojan a bi navê "Forûma Pirsgirêka Kurd" li dar xist. Forûm di 24-25'ê Tîrmehê de, li Navenda Çanda Cîgerxwîn pêk hat. Ji kesên nêzî Hîzbûllahê heta kesên nêzî Med Zehrayê, gelek derdorên Îslamî tevli forûmê bûn. Ji Başûrê Kurdistanê jî li ser navê cemaetên Îslamî Alî Bapîr tevlî çalakiyê bû. Her wiha neviyê Şêx Seîd Abdulîlah Firat, Midûrê Beşa Zimanên Dijîn a Zanîngeha Artukluyê Prof. Dr. Kadrî Yildirim û Parlamenterê AKP'ê yê Amedê Abdurrahman Kurt jî di forûmê de amade bûn. Di forûma ku bi kurdî û tirkî pêk hat de, tiştên herî balkêş Prof. Dr. Kadrî Yildirim got. Yildirim diyar kir ku digel ku Kurdan dev ji daxwaza Kurdistaneke serbixwe û federasyonê berdaye jî dewlet gavan navêje û wiha axivî: "Dibêjin Kurd nizanin çi dixwazin. Tişteke wisa tune ye. Kurdan pêşî dewleteke serbixwe xwest, hin Kurdan federasyon xwest. Her wiha sîstema eyaletê jî hate xwestin. Herî dawî hate gotin ku bila Kurd bi awayeke makeqanûnî bên qebûlkirin û perwerda kurdî bê dayîn. Digel ku daxwazên Kurdan dakete 'xişînê' jî dibêjin Kurd nizanin çi dixwazin. Vaye gelek tişt hatine gotin, ji van yekî hilbijêrin û mafên Kurdan bidin. Kurd doza azadiya ziman û miletê xwe dikin. Divê Musilman jî di vî warî de ji Kurdan re bibin alîkar, pêşengî bikin."

## Peyva Kurdistan li pêş bû

Yildirim destnîşan kir ku heta bi zimanê kurdî perwerdehî neyê dayîn ti pirsgirêk çareser nabe û wiha berdewam kir: "Cemaet, tarîqat û rêxistinên Îslamî yên kurd û tirk li hemberî pirsgirêka kurd bêdeng man, bê helwest man. Dibêjin 'kesên têkoşîna Kurdayetiyê didin ji Îslamiyetê dûr ketine'. Ger îro pirsgirêka kurd çareser nebibe, sedema esasî derdorên Îslamî ne. Îslamparêz di vî warî de li paş man, bûn asteng. Ger îro ez ji dîn derneketibim, sedema vê yekê ew e ku ez dîn baş dizanim. Lê Musilmanên ku dîn bi cih naynin û ji vê pirsgirêkê re bêdeng dimînin, xelkê ji dîn derdixin."

Neviyê rêberê serhildana 1925'an Şêx Seîd, Abdulîlah Firat jî li hemberî gotinên 'Şêx Seîd ne ji bo kurdayetiyê ji bo Musilmaniyê şer kir' nerazîbûn nîşan da û ev tişt gotin: "Şêx Seîd alimekî mezin bû, rêberekî Kurdan bû. Ji bo rizgariya gelê xwe şer kir, têkoşiya." Weke hemû axaftvanan Firat jî aşkera kir ku sedema esasî ya vê zilm û zordariya ku li Kurdan tê kirin feraseta Kemalîzmê ye û ji hemû Musilmanên Kurd xwest ku li hemberî vê ferasetê têbikoşin. Serokê Komeleya Umut Işığı ya Wanê Abdurrahîm Orhan jî bal kişand ku ji xeynî PKK'ê ti tevgereke kurd nekariye rih û giyana neteweyî di nava Kurdan de bi pêş bixe û ji Dewleta Tirk xwest ku hemû mafên neteweyî yên Kurdan bide.

Nivîskar Altan Tan jî berê rexneyên xwe da terîqet û cemaetên mezin ên mîna Nur, Qadirî, Nexşebendî û Menzîlê û aşkera kir ku wan terîqetan heta niha ji bo azadkiririna Kurdan û serbestkirina zimanê kurdî ti gotin negotine, ti gav neavêtine. Tan destnîşan kir ku ger Musilman ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd nexebitin û destê xwe nexin bin vî barî, wê hemû Musilmanên Kurd ku rayên xwe didin partiyên oldar, ji vir û şûnde wê rayê xwe bidin BDP'ê. Nivîskara tirk Yildiz Ramazanoglu jî di axaftina xwe de xwest ku hemû Tirk bi kurdî hîn bibin û Kurd weke neteweyeke din bên qebûlkirin. Ramazanoglu destnîşan kir ku neqebûlkirina Kurdan neqebûlkirina olê ye jî.

## Bêdengiya zilmê şirîkatiya zalim e

Di panela ku tim Komara Tirkiyeyê weke "T.C" û bajarên Kurdan jî weke "Kurdistan" hate binavkirin de, hin axaftvan jî bi kurdî axivîn. Serokê Ozgur Der'a Tetwanê Ersîn Sonmez ku bi kurdî axivî, rexne li Musilmanên ku li pey partiyên ku nêrîna fermî ya dewletê diparêzin diçin, kir û ev hişyarî kir: "Bêdengiya zilmê şirîkatiya zalim e. Werin nebin şirîkê zalim. Kurd di bin zilm û zordariya dewletê de hatin perçiqandin, 3 hezar gundên wan hatin şewitandin, bi deh hezaran Kurd hatin qetilkirin. Zimanê wan hate qedexekirin. Divê dewlet ji Kurdan lêborîn bixwaze û hemû mafên ku dagir kiriye, weke dewleteke nûjen îade bike."

Di forûma ku du rojan dom kir de, encamnameyeke ku ji nêrînên hevpar ên hemû beşdaran pêk dihat, hate amadekirin û ji beşdaran re hate pêşkêşkirin.

## Hin xalên encamnameya forûmê

*- Pirsgirêka Kurd ji ber kadroyên Kemalîst ku bi feraseteke jakoben pêk dihatin û xwestin neteweyeke din ava bikin, pêk hat.*

*- PKK hem perçeyeke vê pirsgirêkê ye û hem jî encama pirsgirêka Kurd e. PKK di warê çareserkirina tundiyê de muxatab e. Di çareserkirina pirsgirêka Kurd de jî, bi hemû aliyên xwe, muxatab gelê Kurd e.*

*- Ji ber ku AKP nekarî xwe ji zîhniyeta fermî rizgar bike, rêliberwekirin pir qels ma û negihişt encamê. Ji metirsiya wendakirina dengan, dest bi gotinên ewlekariyê kir.*

*- Divê artêş dev ji operasyonan berde û PKK jî biryara bêçalakiyê bigre. Ji bo ku PKK dev ji çekan berde, divê hemû şert û mercên pêwîst bêne amadekirin, gav bêne avêtin.*

*- Ji ber niheqî û zilma ku li Kurdan hatiye kirin, divê dewlet bi awayeke fermî lêborîn bixwaze.*

*-Bêguman hemû ziman yek ji ayetên Xwedê ne. Ji ber vê yekê divê hemû astengiyên li pêşiya zimanê kurdî bên rakirin û kurdî bibe zimanê perwerdehiyê. Divê kurdî di hemû qadên jiyanê de xwe bi awayeke azad îfade bike.*

*- Bila sonda bi navê "andimiz" a li dibistanan bê rakirin û nivîsên "Pir şanaz im ku ez Tirk im" ji ser çiyayan bên paqijkirin.*

*- Divê aqûbeta bi hezaran kuştinên kiryarnediyar, lêpirsîn û doz bi awayeke cidî bên meşandin û berpirsyar bêne cezakirin. Divê hesaba şewitandina gundan ji berpirsyaran bê pirsîn. Pêwîst e kirinên Ergenekonê ku li herêmê kirine, bên lêpirsînkirin.*

*- Lazim e siyasetmedar û şaredarên Kurd ku bi operasyonan hatin girtin, serbest bêne berdan. Pêwîst e şert û mercên Ocalan ên girtîgehê bên başkirin û PKK jî şertên Ocalan weke hinceta şer nîşan nede.*

*- Lazim e dev ji daxwaza artêşa nûjen, ku JÎTEM'ê tîne bîra mirov, berdin û careke din behsa daxwazeke wiha nekin.*

*- Berpirsyara esasî ku bû sedema kuştinên kiryarnediyar, şewitandina gundan, îşkenceyan, koçberiyan û înkarkirina zimên, dewlet e.*




Rûdaw
Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Serokê Civata Rêvebir
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

Sernûser
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

Redaksiyon
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadKurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

Dîzayner
Hamdullah Yumlu

Îdare û belavkirin
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

Şêwirmendê yasayî û aborî
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Loveparade Almanya - Şahiya evînê bû rêkeha mirinê



*Di şahiya evînê (Loveparade) ya li bajarê Almanya Duisburgê - ku di 24'ê Tîrmehê de pêk hat - panîk di nav beşdaran de derket û di encamê de 19 kesan jiyana xwe ji dest dan û 340 beşdarvan jî birîndar bûn. Di tunelê 150 mitroyî yê ku derbasî qada şahiyê dibû de panîk derket û karesatê dest pê kir. Di qada şahiyê de cihê 500 hezar kesî heye, lê 1,4 milyon kes derbasî qadê bûbûn.*



Wezîrê Çavkaniyên Siruştî Aştî Hewramî:

# Petrola xam a Kurdistanê qet neçûye derve!

## *"Kesê ku van îdiayan belav dike, bila vê yekê îspat bike"*



Wêne: Rûdaw

**Wezîrê Çavkaniyên Siruştî Aştî Hewramî**

**Rûdaw (Hewlêr) -** Li ser îdiayên ku petrola xam ji Herêma Kurdistanê bo Îranê tê firotin, Wezîrê Çavkaniyên Siruştî yê Herêma Kurdistanê Aştî Hewramî diyar dike ku petrola xam a Herêma Kurdistanê derneketiye. Hewramî dibeje ku ew dixwazin petrola Herêma Kurdistanê bi boriyan bişînin, "lê pir girînge ji bo ku pirsgirêka petrolê bi awayekî tevahî ligel Bexda çareser bibe, yasaya dabeşkirina dahata petrolê li gor madeya 112'ê ya destûra Îraqê derkeve." Aştî Hewramî dibêje ku nûnerên Kurd ew maf di destûrê de çespandiye û ew nikare dest jê berde.

**Rûdaw: Di vê demê de pir li ser we û wezareta we tê nivîsandin û gotin. Tê îdiakirin ku petrola xam a Herêma Kurdistanê bi qaçaxî diçe Îranê. Hinek caran jî tê gotin ku hûn li derveyî desthilata hikûmetê ne û desthilata civata wezîran jî ser we tune û desthilateke siyasî li derveyî hikûmetê li pişt we ye.**

**Aştî Hewramî:** Ev axaftin hemû ji bo derxistina aloziya ne. Siyaseteke me heye û ew jî siyaseta hikûmetê ye, me hemuyan sond xwariye û bi rênumaya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, ji serokwezîr bigre û ez jî di nav de, me soz daye ku siyaseta xwe biparêzin û pêdagiriyê li ser mafên destûrî yên Herêma Kurdistanê di warê petrolê de bikin. Ev polîtîka di heyama kabîneya 5. de hatiye darêştin, niha jî em hemû bi piştîvaniya serokwezîr berdewam in li ser vê siyasetê. Em ji mafên xwe yên destûrî zêdetir naxwazin û ji wan kêmtir jî qebûl nakin. Ev mafeke ku nûnerên gelê Kurd di destûra herdemî ya Îraqê de çespandine û mafê min nîne dest ji van mafan berdim. Lê belê nabe em sînorê mafên xwe yên di destûrê de derbas bikin. Kesên ku dibêjin Aştî Hewramî wiha dike û wiha nake, dixwazin siyaseta me ya petrolê têk bidin. Rapora rojnameya New York Times hevdeme ligel rewşeke siyasî ya taybet ku Îraq di destpêka dirustkirina hikûmeta nû de ye. Ev êrîş ne li ser min e, lê li ser siyaseta petrolê ya Herêma Kurdistanê ye. Ev siyaseta hikûmetê û ya serokayetiya Herêma Kurdistanê ye û li Parlamena Kurdistanê hatiye guftûgokirin û pesendkirin. Ewên ku dixwazin li ser vê siyasetê bikin an tênagihin û mixabin hinek ji wan li hundirê Kurdistanê ne û yên din jî dijî berjewendiyên gelê Kurd in.

### Berhemanîna Elektrîkê

**Têgihiştina siyaseta petrolê ne hêsan e, ji ber vê yekê pir caran dibe amûreke şerên siyasî. Xelk gilî dikin ku siyaseta petrolê ya Kurdistanê ji wan re nehatiye zelalkirin.**

Rêza min ji giliyên xelkê re heye, lê hêvî jî dikim ku xelk rêz li siyaseta petrolê ya Herêma Kurdistanê bigre ku bi wêrekî û dijwariyeke zêde destpê kir. Berî 5 salan dema me dest bi vî karî kir, li Hewlêr û Silêmaniyê elektrîk rojane bi tenê du demjimêran hebû, niha rojane 20 demjimêran elektrîka me ya niştîmanî heye. Berî 3-4 salan me nêzîka ji sedî 15-20'ê butçeya Herêma Kurdistanê ji bo kirîna gazoil bikar dianî da ku 3-4 demjimêran elektrîka me hebe. Salane 700 milyon heta milyarek Dolar ji butçeya Herêma Kurdistanê di vî warî de dihat xerckirin, niha ji sedî 3'yê van pereyan ji bo vê mebestê ji butçeya Herêma Kurdistanê nayê xerckirin. Yanî hem elektrîka me zêde bû û hem pere li me vegeriyan. Niha em bi xwe petrolê dertînin û li rafînera Kurdistanê safî dikin û gazoilê didin santralên elektrîkê. Ger me wiha nekira, niha rewşa Kurdistanê di hemû waran de pir xerab dibû. Niha 40 şîrketên ku ji 17 welatên cîhanê hatine, li Herêma Kurdistanê di warê gaz û petrolê de kar dikin, buhayê zêdetir 10 milyar Dolar hilberînê li Kurdistanê kirin û jimareke zêde ya xelkê li ba wan şîrketan kar bidest xistine. Hêdî hêdî pîşesazî li Kurdistanê destpê dike. Ger sektora elektrîkê bi sedema siyaseta petrolê ya Herêma Kurdistanê nehata pêşxistin, ti tişt ji van nedibû. Opozîsyon an çi dezgeheke medya ger dixwaze bê amade bibe li muzayedeyan, bila bê amade bibe çiqas tonên petrola reş tê firotin û bila biçe ser sînor jî çavdêriyê bike. Hinek dibêjin, petrola xam a Kurdistanê tê firotin, bila dokumentekê bînin ku ew petrola xam a Kurdistanê ye û tê firotin.

### Petrola Xam

**Lê endamê Fraksyona Goran li Parlamenê Kurdistanê Ebdulla Mela Nurî dibêje belgeyên me hene ku petrola xam a Kurdistanê bi qaçaxî tê firotin û pere diçin ji PDK û YNK'ê re.**

Bila parlamenter Ebdulla Nûrî dokumentan bîne. Ger na, ev derewe û xapandina xelkê ye.

**Ew dibêje dokumentên wî hene.**

Êdî divê wan pêşkêş bike. Axaftin hêsane, lê îspatkirin merc e. Ger belgeyên wî hene bila wan bibe parlamenê û bide îspatkirin ku petrola xam ji Herêma Kurdistanê derdikeve, hingî amade me û hikûmet jî amade ye li pêşiya gel hisab bidim. Lê ev derew e ji ber ku petrola Herêma Kurdistanê naçe derve. Ger mebesta wan petrola xam e, êdî agahiyên wan şaş in. Ger belge hene û ger kêmasî çê bûne, keremkin em wan çareser bikin, lê axaftinên bê bingeh milet dixe sergêjiyê û herwiha siyaseta petrolê ya Herêma Kurdistanê zêdetir dixe ber tîrên neyaran.

**We sandoq an hisabê bankê yê taybet ji bo dahata petrolê vekiriye, wek ku di yasaya gaz û petrolê ya Kurdistanê de hatiye destnîşankirin?**

Ev hisabê me li Wezareta Darayî ya Herêma Kurdistanê heye, lê ne hisabeke zêde ye ji ber em petrolê naşînin derve. Diviyabû ew hisab dirust bibe û li jêr çavdêriyê be. Ger em gihiştin qonaxa berhemanîn û firotina berdewam a petrolê, li gor rêkeftinê ligel Îraqê, diçe sandoqa dahatên petrolê yên Îraq ku ew jî hê nehatiye vekirin. Em hê negihiştine wê qonaxê, lê hisabê me li Wezareta Darayî vekiriye.

**Lê berpirsên Wezareta Darayî dibêjin dahata petrola li ba wan nîne?**

Na, heye. Piştî derketina yasa li parlamenê û biryara parlamenê, divê mehane -eger paşma hebe- ji bo hisabê wezaretê li Wezareta Darayî bê şandin. Lê hejmar ne ewqas zêde ne, weke ku wan parlamenteran behsa wan kiribû ku qaşo ji hizbê re diçin. Ger di salekê de ewqas bibe, ne di mehekê de, em ê pir sipasdar bin ku ew jî ne ji bo hizbe lê bo hikûmetê ye. Hisabê li Wezareta Darayî jî hisabekî daxistî ye û niha jî bo tiştekî bikar nayê anîn, heta em bizanin ligel Îraqê çawa yekalî dibe.

**Li gor projeya rêkeftina yasa gaz û petrola Îraqê ku yeke ji pirsgirêkan, behsa dabeşkirina dahatên petrolê tê kirin. Ji ber wêya we biryar daye ku destêwerdanê tê de nekin?**

Erê, ji ber ku li Bexda jî sandoq nehatiye danîn.

### Pirsgirêk ligel Bexda li ser dabeşkirina dahata petrolê

**Nedana wê dahatê bo Bexdayê ne ji ber wêya ye ku hûn bi ji sedî 17'ê dahata petrola Herêma Kurdistanê ne razî ne?**

Na, ew dimîne ser rêkeftinên siyasî. Em li benda tiştekî ne, ew jî ew e ku yasa dabeşkirina dahata gaz û petrolê li Bexda derkeve. Li gor madeya 112. a destûra Îraqê, hemû dahata gaz û petrola Îraqê diçe wê sandoqê, mesrefên girîng jê tên derxistin û tiştê ku dimîne li gor hejmara daniştvanan ku ew ê Herêma Kurdistanê bila em bibêjin ji sedî 17 ye, yekser ji wê hisabê bo me bê, bi serperiştiya parlamen li ser Herêma Kurdistanê tê dabeşkirin. Ev hisab heta niha li Bexda nehatiye vekirin, pereyên ku niha ji Bexda ji bo Herêma Kurdistanê tên ji bo butçê tên. Em dibêjin destûr wiha nabêje, çimkî ger biçe ji bo butçe, wek wêya ye tu kirê werbigre. Wek mînak, Îraq behsa wê yekê dike ku piştî çend salan dikare rojane 10-12 milyon bermîlan bişîne derve, hingî butçeya me salane digihe 500 milyar Dolaran, lê dibe butçeya Îraqê bi 200 milyar Dolaran bê danîn, pereyên zêde neyên bikaranîn ji bo wê salê, bi vî awayî ew 300 milyarên zêde dîsa li Bexda dimînin û em tiştekî nabînin û beşdar jî nabin di xerckirina wan de. Destûr wiha nabêje, destûr dibêje piştî jêderxistina xerciyên girîng divê dahat bê dabeşkirin, yanî wê demê em ê ji sedî 17 ji wan 300 milyaran jî wergirin. Nakokiyên me li ser vê yekê ne.

**Hûn gazoil û gaza şil bi pereyan didin santralên elektrîkê, wek mînak santrala 500 megawattî ya Ehmed Îsmail li Hewlêrê?**

Na, em bi belaş didin wan.

**Lê santral sivîl e!**

Erê, lê em her wiha bi belaşî nadin rêzdar Ehmed Îsmail, çimkî em xerciyên şuxulandina elektrîkê didinê, lê ne xercî û pereyên tevahiya berhemê. Ya Çemçemal jî em gazoil û gaza xwezayî jê re dabîn dikin.

**Yanî ew beşeke ji piştîvaniya hikûmetê ji bo wê sektorê, da hevwelatî elektrîkê bi nirxeke erzan bidest bixin?**

Erê, ger wiha nebe nirxê elektrîkê pir giran dikeve ser hevwelatiyan û anîna sotemeniyê jî ji Îraq û derve, wek me di sala yekem a şuxulandina santrala 500 megawattî dît, ne hêsan e.

**We ragihandibû, eger yek belge hebe ku biselimîne me tankerek petrola xam a Herêma Kurdistanê şandibe derve, ez amade me îstifa bikim. Hûn bi tevahî piştrast in ku nefta xam a Herêma Kurdistanê ji ti kêlgehekê neçûye Îranê?**

Ji wê demê wirde ku ez li vir bûme, me molet nedaye petrola xam a Herêma Kurdistanê biçe derve û neçûye jî, ez ji vêna piştrast im. Ji ber her du şîrketên ku petrolê li Herêma Kurdistanê derdixin, DNO û Genel Enerji nikarin tankeran bikar bînin, petrola ku çûye palavgehan, di bin çavdêriya rasterast a me de bûye. Lewra em sedî sed dilniya ne ku petrola xam a Kurdistanê qet neçûye derve, ji xeynî wê petrolê nebe ku çar mehan berî niha bi riya boriyên nefta Îraqê hat şandin, wêna jî bi riya Somo hat cîbicîkirin. Herçiqas mafê me heye li gor destûrê em petrola xwe bifroşin, bi hemû riyekê em dikarin wî karî bikin. Dema dibêjim me nekiriye, nayê wê wateyê ku ew ne mafê me ye.

**"Em dixwazin yekîtiya Îraqê bê parastin û Erebtiya Îraqê lê bê vegerandin."**

*Gotina Serokdewletê Sûriyê Beşar Esad piştî civîna wî li gel Serokê Bizava Sedir, Muqteda Sedir û Serokê Îtîlafa Îraqiye, Eyad Elawî, di 17'ê Tîrmehê de, li Şamê ku rayedarên Tirkiye û Îranê jî tevlî civînê bûn. Piştî civîna Esad ligel Sedir û Elawî, serokê Sûriyê ligel Wezîrê Derve yê Tirkiyê Davutoglu behsa pêkanîna Hikûmeta nû ya Îraqê kir û vê yekê Kurd dilgirantir kirin.*



## Referandûma destûrê û helwêsta Kurdên Bakur:

# 'Erê' û 'Boykot'

**Firat Kelehkî**

12'ê Îlonê, roja Darbeya Leşkerî ya sala 1980'an li Tirkiyê derbarê guhertina destûrê de referendum tê kirin. Partî û rêxistinên Kurdan ên wek KADEP, HAK-PAR û Lêgerîna Kurdên Demokrat dibêjin her guhertineke destûrê ger biçûk be jî wê rê liber tiştên din veke lewra wê di referandûmê de dengê 'erê' bidin. Lê BDP'ê biryar daye boykot bike û sedema vêna jî bi wê yekê ve girê dide ku di pakêta guhertina destûrê de ji bo Kurdan tiştek nîne.

Siyasetmedarê Kurd Haşim Haşimî, bibîrxist ku Destûra Darbeya Leşkerî ya 12'ê Îlonê qedexe aniye ser Kurdan û divê bê guhertin. "Ev bû serê 30 salan em hemû dibêjin Zîndana Diyarbekir, hemû nexweşî, îşkence, xwîn û qetil bû û ev esera Darbeya Îlonê û leşkeriyê ye. Niha madeyek ji destûrê were guhertin divê mirov bêje 'erê'. Ev ji bo Kurdan jî îmtîhanek e.''

Di vê derbarê de Serokê Odeya Pîşesazî û Bazirganî ya Diyarbekirê Galîp Ensarîoglu jî got ku ligel hemû kêmasiyan guhertina destûrê pêngaveke baş e. Bi baweriya min, rêxistinên sivîl ên civakî ji bilî derûdora BDP'ê, wê di referandûmê de bêjin 'erê'. Di mesela çareserkirina pirsgirêka Kurd de destûra niha asteng e. Ger kêm be jî, di berjewendiya Kurd de ye. Lewra divê mirov piştgiriyê bidiyê. AKP'ê xeletiyek kiriye ma mirov dikare ji tiştê rast re bêje na? Di referandûmê de em dibêjin 'erê'. Ev nayê wateya em piştgiriya AKPê dikin."

### 'Dengê 'Na' tê wateya piştgirîkirina Artêşa Tirk'

Lê Endamê Rêveberiya Navendî ya BDP'ê û Mamostayê Zanîngeha Dîcleyê Doç. Dr. Ahmet Yildirim, bi awayekî din mijarê dinirxîne: "Daxwaza me ew e destûr ji binî ve bê guhertin ji xala yekê heta dawî. Di pakêta niha de jî ne nasnameya Kurd û ne jî mafê perwerda bi zimanê dayikê tiştek tê de cîh nagre. Bawer nakim guhertina niha pirsgirêka Kurd çareser bike. Ev pakêta niha ne tenê ji Kurdan re bo hemû Tirkiyê jî tiştekî nû nayîne. Daxwaza AKPê ew e bi vê pakêtê ji hêla hiqûqî ve alîgirên xwe bîne ser kar. Loma emê boykot bikin."


Doç. Dr. Ahmet Yildirim


Haşim Haşimî


Eren Keskîn

Çalakvana Mafê Mirov û Jinan Eren Keskîn, wek keseke ku di hilbijartinan de dengê xwe daye BDP'ê, guhertina niha pir baş nabîne û ji Rûdawê re mijarê wiha rave dike: "Ez dibêm têr nake lê ezê bêjim 'erê'. Herwiha ez naxwazim ev wek pakêta AKP'ê bê dîtin û jêre bêjin 'na'. Ger em bêjin 'na' wê bandora leşkeriyê li ser siyaseta Tirkiyê zêdetir bike. Ligel hemû kêmasiyan jî, ezê bêjim 'erê.' Ez BDP'ê fam dikim ka çima dibêje boykot. Lê wek keseke dengê xwe daye BDP'ê ez jî di nav kampanya 'erê' de me, jiber 'na' tê wateya piştgirîkirina Artêşa Tirk.''

### 'BDP li gor berjewendiyên xwe yên siyasî tevdigere'

Di daxuyaniyekê de bo Rûdawê Parlamenterê AKP'ê yê Bedlîsê Vahît Kîler, di mesela guhertina destûrê de qedexeya siyasî ya li ser Ahmet Turk wek mînak pêşan da û wiha pêde çû: "Ez tiştekî xirab di vê guhertinê de nabînim ku BDP li dijî derkeve. Ji hemû partiyan zêdetir BDP'ê zerar ji vê destûra heyî dîtiye, bi taybetî gelê Kurd û hemû Tirkiyê. Bê guman kêmasiyên pakêtê hene lê mebesta me zêdetir demokratîkbûn û zêdetir azadî ye. BDP bi çavekî din berê xwe dide meselê û li gor berjewendiyên xwe yên siyasî tevdigere ne ku li xelkê herêmê (Kurd) difikire."

Berevajiya nirxandinên Ensarîoglu, Kîler û Keskîn, Endamê Rêveberiya Navendî ya BDP'ê Ahmet Yildirim, biryara boykotkirinê wiha şirove dike: "Em wiha difikirin ger bêjin 'na' tê wateya wek em Destûra 12'ê Îlonê diparêzin, wek CHP û MHP'ê. Yan jî em bêjin 'erê', wê demê emê bikevin xeta AKP'ê û emê dirêjiyê bi destûra heyî bidin. Em ne dibên 'erê' û ne dibên 'na' armanca me destûreke nû ye û emê boykot bikin.''

# Baweriya Kurdan bi sozên Esad nayê

**Besam Mistefa**

Roja 17 Tîrmehê Serokkomarê Sûriyê ligel jimareke rojnamevanên Tirk li Şamê civiya û behsa Kurdan û PKK'ê kir. Esad ragihand ku ger (1500) endamên PKK'ê yên Kurdên Sûriyê dest ji çekan berdin, Sûriyê amade ye wan hembêz bike. Esad got: "Kurd li Sûriyê û Tirkiyê ne geştyar in û ne mêvanên demkî ne, lê beşekî serekî ji tevna civaka van herdû welat in û divê pirsa wan bi riya diyalogê bê çareserkirin."
Nêzîka 1500-2000 endamên PKK'ê ji Kurdên Sûriyê ne. Ger şer hat rawestandin û çareseriya siyasî destpê kir, çarenûsa van kesan ne diyar e. Niha Sûriyê dibêje emê wan vehewînin, lê Berpirsê Partiya Civaka Demokratîk (PYD) ê Ewrûpa Ebdulselam Mistefa bo Rûdawê diyar dike ku armanca Sûriyê ne çareserkirina pirsgirêka Kurd e, razîkirina Tirkiyê ye: "Sûriyê dixwaze Tirkiyê navbênkariyê di navbera wê û Îsrailê de bike loma xwe nerm dike himberî Tirkiyê. Sûriyê nikare bi awayekî serbixwe biryaran bide nemaze derheqê Kurdan de. Kilîta çareserkirina pirsgirêka Kurd li Tirkiyê ye. Di dema dawî de, Tirkiye û serokwezîrê wê Erdogan karîbûn pêgeheke xwe ya bihêz di nav cîhana Îslamî û Ereban de dirust bike û bandora wê zêdetir li ser Sûriyê dibe. Niha Ereb wek ku Selaheddîn be, berê xwe didin Erdogan."


Serokdewletê Sûriyê Beşar Esad

Derbarê daxwiyaniya Esad ku dibêje Kurd beşekî resen in ji civaka Sûriyê, Ebdulselam Mistefa da zanîn ku ev tenê axaftin in û bo aramkirina Kurdan in û divê di pratîkê de bên îspatkirin: "Eger gavên pratîk neyên avêtin em ji van sozan êdî bawer nakin. Esad dixwaze kelandina ku li Sûriyê û navçê heye bi vî awayî vemirîne berî ku teqînek pêk bê. Ew dibêje Kurd xwediyên vî welatî ne, naxwe çima 400 hezar Kurdan bê nasname heta niha dihêle û wan wek welatiyên xwe qebûl nake? Çima rewşa xerab a navçeyên Kurdî baştir nake?
Navbirî tekez kir ku Sûriyê tiştê Tirkiyê jê dixwaze pêktîne û domand: "Pirsgirêka Kurd li herçar parçeyan bihev re girêdayî ye. Ger Tirkiyê gavan bavêje asayî ye ku Sûriyê jî bavêje. Esad ji alîkî de dibêje divê pirsgirêk bê çareserkirin û ji aliyê din ve jî dibêje emê peymanên ewlekariyê ligel Tirkiyê xurttir bikin, ev paradoks e. Sûriyê dixwaze Tirkiyê razî bike wek mînak berî demekê Tirkiyê operasyonek dijî BDP'ê çê kir û nêzîka 500 kesan girt, piştî wê bi çend rojan Sûriyê jî êrîş kir û çend hevalên me girtin. Sûriyê îro bûye qereqoleke Tirkan."
Lê Mistefa ew nûçeyên ku nêzîka 400 endamên PYD di dema dawî de hatine girtin red kir û wiha pêde çû: "Tiştekî wiha nehatiye kirin. Niha nêzîka 350-400 endamên me girtî hene lê ji piştî serhildana 2005'an ve û heta niha hatine girtin.
Endamê Bizava Îslamî ya Azad û Serbixwe li Sûriyê Mûmin Mihemed Nedîm Kuwêfatiye, bo Rûdawê destnîşan kir ku daxwiyaniyên Esad tenê bo medya ne û tiştekî pratîkî li pey wan tune: "Divê Beşar destpêkê pirsgirêkên navxweyî çareser bike. Ger dibêje divê pirsgirêka Kurd û PKK'ê li Tirkiyê bi riya diyalogê bê çareserkirin, êdî jiber çi diyalogê ligel hêz û rêxistinên Kurd li Sûriyê nake? Divê pirsgirêkên Sûriyê yên pir çareser bike."
Navbirî ku berê endamê gruba `Îxwan Misilmîn` bû û bi sezaya darvekirinê hatiye mehkumkirin, gotina Beşar ku Kurd beşek in ji tevna Sûriyê wiha rave kir: "Kî dixwaze bila bixwaze û kî naxwaze jî bila nexwaze lê Kurd li Sûriyê beşekî resenên vî welatî ne û pêkhateyeke civaka Sûriyê ne. Ger tu berê xwe bidî rewşa Kurdan li Sûriyê tuyê durûtiya Esad bi awayekî eşkere bibînî. Beriya du salan biryara 49 derket û Kurd ji mafê mulkdariyê bêbeş kirin. Esad dibê divê riya diyalog û demokrasiyê bê meşandin lê berî çend rojan mirovekî 80 salî (Heysem Malih) û du keçên biçûk ku hê temenê wan nebûye 20 sal xistin girtîgehê. Êdî mirov hêviya çi ji hikûmeteke wiha bike. Divê Kurd û beriya wan Ereb jî tu hêviyan liser soz û daxwiyaniyên Esad ava nekin û êdî bi van tiştan neyên xapandin."

Konsolê giştî yê nû yê Almanya li Hewlêrê:

# Berî ku ez bêm Kurdistanê min hewl da xwe fêrî zimanê kurdî bikim



**Stefan Bantle kî ye?**

*Stefan Bantle di sala 1967'an de li bajarê Almanya Stuttgart jidayik bûye, li bajarên Heidelberg û Berlîn zanîngeh xwendiye, wî zimanê Erebî û Îslamnasî jî xwendiye. Dûre li Wezareta Vejandinê kar kir û ji sala 1998'an ve li Wezareta Derve kar dike. Wî ji mêv je navçe naskiriye û di dema xwendinê de ji Tunisê heta Lubnan û Sûriyê ziyaret kirine.*

**Hewlêr (Rûdaw) -** Konsolê giştî yê nû yê Almanya li Hewlêrê, Stefan Bantle, di hevdîtina xwe ya yekem li gel medya Kurd de got ku çend saziyên xizmetguzarî û kulturî yên Alman hene ku giringiyê didin Herêma Kurdistanê û yek ji wan taybet e bi pevguherandina kursiyên xwandinê. Bantle herwiha eşkere kir ku berî ew bê Kurdistanê, wî dersên kurdî xwendin da fêrî zimanê kurdî bibe, lê hê kurdiya wî zêde baş nebûye.

**Rûdaw: Li gor agahiyên me hûn Kurdan û pirsa wan jî nas dikin, ev çawa bû?**

**Stefan Bantle**:Dema min zanî ku ez ê bêm vir, min xwe bi awayekî cidî amade kir û li Berlîn û Wezareta Derve li gel hinek kesan axivîm ku agahiyan ji wan derbarê dîroka Kurdistanê û herwiha derbarê rewşa siyasî ya niha ya Herêma Kurdistanê de werbigrim. Herwiha min nûnerên Kurd û balyozê Îraqê jî dît û min xwe fêrî zimanê kurdî jî kir, lê zêde fêr nebûme û hêvî dikim li vir bikarim baştir fêr bibim.

**Hûn çawa li têkiliyên Herêma Kurdistanê yên di gel Almanya dinêrin?**

Dahatûya Herêma Kurdistanê li Îraqeke federal û demokratîk dibînim. Derfeta Herêma Kurdistanê pir baş e, ji ber nêzîkî Tirkiyê ye û dikare peywendiyên xwe yên aborî li gel Ewrûpa dirust bike. Armanceke min a sereke ew e ku peywendiyên aborî û bazirganî di navbera Herêma Kurdistanê û Almanya û welatên din ên Ewrûpa de dirust bikim.

**"Derfeta Herêma Kurdistanê pir başe û dikare peywendiyên aborî li gel Ewrûpa dirust bike"**

**Bername û armancên we yên din li Kurdistanê çi ne?**

Bernameya me piştevanîkirina vejandina aboriya herêmê ye. Ji destpêka îsal me buroyeke aborî li Hewlêrê vekir, berî demeke kurt jî me beşa karûbarên konsolgeriyê vekir û em yekem welatê Ewrûpa ne ku li vir beşa dana viza vekirine. Em dixwazin di Îlona dahatû de xwendingeheke almanî vekin, li kêleka wê jî saziya xizmetguzariya akademîk "DAAD" ku kursiyên xwandinê dide xwendekaran. Herwiha peymangeha Goethe beşeke xwe li vir vekiriye, ew giringiyê dide huner û kulturê û mamosteyên zimanê almanî amade dike ji bo di dahatû de waneyên zimanê almanî bidin zarokên Kurd. Rêxistina AGEF jî heye ku saziyeke sivîl e û ji bo kesên ku ji Ewrûpa tên kursan vedike.

**Niha Herêma Kurdistanê dixwaze beşdar proja Nabucco bibe, gelo wêya pêktê ?**

Bi qasê ez jê haydar im, ew hemû şîrket û welatên ku di projeya Nabucco de beşdar in, giringî dibînin ku Herêma Kurdistanê bibe beşek ji wê projeyê. Şîrketa Alman ya gazê RWE demek berê li vir bû, ew çaverê dikin ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê bersiveke zelal bide wan ku ew dikare gazê bi rêya boriyên vê projeyê bighîne Ewrûpa.

**Tê gotin rola şîrketên almanî li gor rola kompanyayên din ên Ewrûpî û Amerîkî li Herêma Kurdistanê pir lawaz e, tu sedema vê yekê ji bo çi vedigerînî?**

Ez bawer im sedema sereke ew e ku li Almanya şîrketên mezin û navdar ên petrol û gazê tune. Lê ger ez Almanya li gel welatên din bidim berhev, dikarim bêjim ku kompanyayên Almanî bi awayekî aktîv beşdar in. Ez hêvîdarim ku nûnerên Herêma Kurdistanê li Berlînê li ser vê pirsê kar bikin û fîrmayên Almanî han bidin û wan bînin vir.

**Herêma Kurdistanê di çi warekê de jêhatî ye şîrketên Almanî bikarin karê hilberînê têde bikin?**

Ya yekem di warê jêrxaneyê de, ji bo mînak plandanîn û şaredarî, av û kanalîzasyon, çêkirina cadeyan û berhemanîna elekterîkê û warê enerjiyê bi giştî. Herwiha di warê tendirustî û nexweşxaneyan de. Ez bawer im zêde sûd ji derfeta çandiniyê jî nehatiye standin, bi taybet jî di warê pîşesaziya xwarinê de ku li gor min Almanya dikare roleke baş bilîze.

**Hejmareyek zêde ya Kurdan li Almanya dijîn ku mafê wan ê penaberiyê hatiye redkirin. Gelo Almanya jî mîna Brîtanya û çend welatên din ên Ewrûpa wê wan dersînor bike?**

Bi qasê ku ez haydar im ti planek wiha tune û ji bo wergirtina agahiyan di vê derbarê de divê ez peywendiyê bi Wezareta Navxwe bikim. Biryara şandin û neşandina wan peywendî bi rewşa vir heye, lê dadgeh dikare ji bo her kesekî biryareke taybetî bide.

*Hevpeyvîn: Hawar Ebdulrezaq*



Wêne: Rûdaw

**Konsolê giştî yê Almanya Stefan Bantle**

**Azad Kurdî**

Elî Qazî derbarê wesiyetnama Pêşewa Qazî Mihemed de:

## "Dengê wî tune, lê wesiyatname rast e"

Piştê ku wesiyetnama Qazî Mihemed bi deng di internetê de hat weşandin, Kurê Qazî Mihemed, Elî Qazî di daxwiyaniyeke taybet de bo Rûdawê got ku piştrast nebû deng ê Pêşewa Qazî Mihemed be, lê naveroka wesiyaetnamayê rast e.

Yekemîn Serokkomarê Kurdistanê Pêşewa Qazî Mihemed, sala 1946'an beriya darvekirinê di wesiyetnama xwe ya siyasî de hinek şîretan li netewa Kurd dike. Qazî Mihemed şîretê li Kurdan dike nabe bi derew, fend û fêl û sozên dijminan bên xapandin: "Dijminê Kurd ji her deste û qewmekê be, her dijmin e, bêrehm e, rehmê bi we nake, we bi destê hevdû dide kuştin, bi derew û fêlan we berdide hev. Di nav hemû dijminên gelê Kurd de, dijminê Ecem ji hemûyan zalimtir, leinetîtir, xwedênetirs û bêrehm e. Ji encamdana tu tawanekê li dijî gelê Kurd xwe naparêze."

**"Yekgirtin û yekbûn sembola serkeftinê ye"**

Neviyê wî Elî Qazî di derbarê dengê di înternetê û naverola wesiyetnameya Pêşewa Qazî Mihemed de wiha axafî: "Li cem me dengê Pêşewa tune ku wesyetnameyê dixwîne, lê deqa nivîskî ya wesiyetnameyê li cem me heye. Bawer nakim ev dengê Pêşewa be, lê naverok wesiyetname û şîret ên Pêşewa ne." Elî Qazî tekez kir: "Belgenameyên wê demê di arşîva Rûsan de hene û hê ji aliyê Kurdan nehatiye peydakirin." Ji aliyekî din Endamê Polîtburoya PDKÎ Mihemednezîf Qadirî, ji Rûdawê re ragehand: "Ev ne dengê Pêşewa Qazî Mihemed e, lê kesek bi navê Ehmed Qadirî wesiyetnama Pêşewa bi dengê xwe xwendiye."

Qazî Mihemed di beşeke din a wesiyetnama xwe de, li ser yekgirtin û yekîtiya gelê Kurd tekez dike ku berdewam wek derbeyeke mezin xisar gihandiye Kurdan û wek sedema hilweşîna Komara Kurdistanê li Mehabadê jî destnîşan dike: "Sembola serkeftina hemû gel û neteweyeke cîhanê yekgirtin û yekbûn e, her neteweyekê yekîtî û tebahî tunebe, herdem wê di bin destê dijminan de be, tu tiştekî gelê Kurd ji gelên din ên ser erdê kêmtir tune. Lê hun di mêranî, xeyret û jêhatîbûnê de li gelek ji wan gelên ku rizgar bûne, pêştir in, miletên ku li bin destê dijminên zordar rizgar bû, wek we ne. Lê yên ku xwe rizgar kirine, yekîtiya wan hebûye."

Qazî Mihemed, di wesyetnameya xwe de daxwaz dike dema Kurd bi dijminên xwe re tevdigerin, haya wan ji xwe hebe: "Ez wek birayekî we yê biçûk di riya xwedê de, ji we re dibêjim, yek bigrin û qet pişta hev bernedin. Dilniya bin eger Ecem hinguv bide we, xwiya ye ku jehr kiriye nav de, bi sondxwarin û sozên derew ên Eceman nexapin, ger hezar car jî dest bi qurana pîroz jî bide, soz û peymanê bide we, piştrast bin mebesta wan xapandina we ye da ku fend û fêlan li we bike. Ecem xwedê nas nakin, ne jî baweriya wan bi xwedê, pêxember, roja qiyamet û hesab û ketabê heye. Li gor wan tenê ji ber ku hun Kurd in, bila Musulman jî bin, tawanbar û mehkûm in."

Mamosteya Kurd Solîn Haçador:

## "Jin di jiyana modern de xulamê mêrên zana ne!"

**Robîn Botî** Barcelona

Solîn Haçador ya 35 salî keçeke Kurd e ji Amedê ye, lê li Brîtanyayê hatiye dinyayê. Niha li Barcelonaya Îspanyayê dijî û mamostetiya zimanê ingilîzî dike. Li aliyê din ew alîkariyê dide organîzasyonên mafên mirovan; pirtûkekê li ser rejîma Franco amade dike û dixwaze ferhengoke dadî ya kurdî-ingilîzî amade bike. Herwiha ew li ser tevgera jinên Kurd jî serê xwe dihêşîne.
Keça Kurd Solîn ji Rûdawê re diyar kir ku Kurdên dîasporayê dikarin rolên giring bilîzin. Ew bala me dibe ser tecrûbeyên cihûyan, "Hêj ku welatê cihûyan azad nebûbû, ewan li her derî lobiyan çêdikirin. Li Amerîkayê di sala 1923'an de ji bo azadiya welatê xwe gelek civînên giring çêkirin. Ew tişta ku wan nêzîkî hev dikir, armanc û daxwaziya wan bû. Wan ji hev hez dikirin, îro jî ev evîna wan berdewam dike. Bi her awayî alîkarî didin hev daku cihê xwe li her çar aliyên jiyanê xurtir bikin. Çiqas xweş e, mirov heyranê wan dibe."

**Divê em karibin di nava bazirganiya dinyayê de cihê xwe bigirin**

Solîn destnîşan dike ew yekîtî û piştgiya di navbera Kurdên dîasporayê de nabîne, "Beriya her tiştî divê em ji hev hez bikin û zanibin em çi dixwazin, li xwe şiyar û bi biryar bin. Armanca me heke azadiya Kurdistanê be, divê em li ser vê yekê bisekinin. Divê siyasetmedarên nû, sînemavan, nivîskar, zanyarên ciwan bigihin. Divê em karibin di nava bazirganiya dinyayê de cihê xwe bigirin. Ev jî tenê bi disiplînê dibe. Disiplîn dermanê rindî û azadiyê ye."
Mamosteya îngilîzî Solîn Haçador li ser jiyana jinên Kurd jî behs dike ku di civata Kurd de cotstandartiyek heye, "Serdestî û zordariya li ser jinan şermeke mezin e. Ev nexweşiya ku li ser wan çêdibe bi zêdeyî ji ber kultura dînî û serweriya feodalîzmê ye. Em ji bîr nekin ku jinên me ji bo azadiya Kurd û Kurdistanê serhildanek mezin didin. Cihê xwe di siyaset, şer, bazirganî, pêwendî û pêşketina aborî de digirin. Jina Kurd ne wek berê reben û bê deng e!"

**Jina Kurd dikare tenê jî bijî**

Haçador balê dikişîne ku koçberî di jiyana jinên Kurd de roleke mezin dilîze, "Jin îro dixwînin, bi nîqaşên mezin hevûdu hişar dikin. Di navbera jinan de piştevaniyek mezin çêdibe; ev pêşketinek mezin e. Jina Kurd dikare li xwe mêze bike; pêdivî bi mêra nîn e. Dikare tenê jî bijî. Bi serbilindahî cihê xwe di nav civatê de jî digre."
Di berdewamiya axaftina xwe de rexneyên tûj li mêrên Kurd digire, "Di jiyana modern de jina Kurd xulamê mêrên zana ne. Mirov ji nezanan fêm dike, lê ji zanayan fêm nake. Nivîskarên Kurd ên mêr tu carî pirsgirêka jinan nahînin rojevê. Gelo dema li Ewrûpa an jî li Kurdistanê jin û keçên Kurd bi destê mêran ve têne kuştin wîjdana wan aram e? Ev çi neyartiye li dijî jinan? Pirsgirêka jina Kurd pirsekî sosyal e. Ev pirs a mêrê Kurd e jî, loma jin û mêr dest bi dest dikarin çareser bikin."

**Ferhenga dadî ya Kurdî-Ingilîzî**

Solînê keçeke gelekî çalak e, dema ku li Îngilîstanê li ser dadî xwendiye, dîtiye ku ji bilî ferhenga Kurdî bi hemû zimanan ferhengên dadî hebûne, "Ev yek gelekî ez êşandim. Min ji xwe re got, 'Zimanê me ezîz û dewlemend e. Pêdiviya me bi ferhengoke dadî ya îngilîzî-Kurdî heye. Divê ez amade bikim!' Ez hê jî li ser vê ferhengê dixebitim. Di pêşerojê de ez ê çap bikim. Rojek dema ku dadgehên me çêbin, ev ferheng dikare ji dadger parezerên me re bibe destekek."

**Pirtûkek li ser Rejîma Franco**

Herwiha ew ê bi mexdûrên şer yên rejîma Franco re hevdîtin kirine û dixwaze ku li ser şerê navxweyî yê Îspanyayê pirtûkekê amade bike. Solîn dibêje ku Franco zorbazek bû û di dema rejîma(1939-1975) xwe de 200.000 mirov kuştine, "Nêzîkî 200.000 mirov jî li zindanê mirine. 114.266 mirov jî hatine winda kirin. Cendekê wendahiyan jî bê rêç hatine veşartin. Aliyê din jî bi sed hezaran mirovên demokrat, komînîst û anarşîst hatine koçberkirin. Rejîma Franco û serdestên Kurdan yên îro gelekî dişibin hev. Dixwazim li ser jiyana mexdûrên rejîma Franco binivîsim. Ev jî dikare ji têkoşîn û siberoja Kurdan re bibe ronahiyek.
Ev pirtûk wê bi kurdî û îngilîzî derkeve, belkî wergere ser zimanê tirkî jî."

Xwendekarê Kurd yê lîseyê, Kosret Heme Salih:

## "Dersa ku ez jê hez nakim tune"

Xwendekarê polê 12'an yê lîseyê di hemû dersên xwe de notên 1 bi dest xistiye û ev du sal in berdevkê şagirtên dibistana xwe ye



Regeznameya Kosret ya Almanî heye, lê dibêje em qet nabin Alman

**Silêmanê Alîxan** Almanya

Kosret Heme Salih xwendekarekî Kurde ji Başûrê Kurdistanê bajarê Silêmaniyê. Temenê wî 18 sal in û ev 12 sal in ew bi malbata xwe re li Almanya dijî. Ew niha li xwendingeheke bajarê Augsburg li pola 12 dixwîne û hemû pileyên wî yên xwandinê Yek in (Li gor sistema Başûrê Kurdistanê dibe ji sedî sed).
Di hevpeyvînek bi Rûdawê re, Kosret H. Salih diyar kir ku "Her sal ji bo her polekê xwendekarek tê hilbijartin ji bo ku bibe çavdêrê pola xwe." Kosret dibêje "niha 40 çavdêrên xwendingeha me hene û ji bo serperiştîkirina karûbarên wan û hemû xwendekaran, ev du sal in ez têm hilbijartin." Ew xwendekarê Kurd zimanên kurdî, almanî, înglîzî, spanî û fransî baş dizane "Ez bêtir ji waneyên zimanan hez dikim, lê kêm ders hene ku ez bêjim ez jê hez nakim."
Kosret sedema zîrekiya xwe ji bo hewldanên xwe û alîkariya mamosteyan vedigerîne, "Ez berdewam hewl didim zanyariyan bi dest bixim û her alet û tiştê ez dibînim ez hizrê lê dikim, gelo ev alet çawa hatiye dirustkirin û çawa kar dike?" Herwiha dibêje "Ji ber ku dayik û bavên min jî xwendî ne, ev jî sedemeke ku ez zîrek bim." Lê di heman demê de diyar dike ku 2 birayên wî hene, lê ew weke wî ne zîrek in "birayekî min zêde ji xwendinê hez nake." Kosret saleke din diçe zanîngehê, lê hê wî biryareke dirust nedaye: "Ez ji aboriyê hez dikim, dibe ku ez li kolêjeke aborî bixwînim."

**"Em ne Alman in û nabin jî"**

Ji bilî xwendinê wî ciwanê Kurd arezûya werzişa xardanê heye û her roj çendîn kîlometran xardanê dike "Li gundekî nêzîk bajarê me, hevalekî min heye û ez her roj bi piyan diçim cem wî û vedigerim."
Kosret Heme Salih ku ji sala 1998'an ve li Almanya dijî, derbarê Kurdisanê dibêje "Ez şeş caran çûme Kurdistanê. Jiyana li wir baştir bûye ji berê, lê mixabin gendelî heye, gelek xelkên hejar hene û li hember vê jî gelek kes zengîn bûne." Kosret dibêje deshilatdariya wê derê li gor ku pêwîste xizmeta xelkê nake.
Niha regeznameya Kosret ya Almanî heye, lê ew dibêje serê min reş e û ez qet nabim Alman û li welat jî ji me re dibêjin Almanî, "Bi rastî em ne Alman in û nabin jî." Tevê vê yekê jî Kosret dibêje piştî ku ez xwendina xwe biqedînim, ez ê li Almanya bimînim û kar bikim: "Eger rewşa Kurdistanê weha bimîne, ez qet naxwazim biçim wê derê kar bikim. Lê her cara dem hebe ez ê biçim welat û serdana xizm û kesûkarên xwe bikim." Wî dîsan got "ez Kurd im û ji welatê xwe hez dikim û dibe ku rewş bê guhertin û baştir bibe, wê demê ez ê bixwazim li wir kar bikim."
Li dawiyê xwendekarê Kurd, Kosret Heme Salih, hêvî xwest ku ji bo zanist û hînbûnê Kurd bên Almanya û "bila Kurdên li Almanya xwe bêtir biwestînin ji bo ku serkevin û mirov şanaziyê bi wan bike." Kosret silav û rêzên xwe ji hemû xwendevanên Rûdawê û her kesê wî nasdike re, dişîne.

## Penaxwazên Kurd rastî pirsgirêkên psîkolojî tên

Yekîtiya Ewrûpa: "Îrland û Yûnanistan ji bo dayîna mafê penaberiyê bi koçberan welatên herî xerab in"

**London (Rûdaw) -** Piştî Yûnanistanê, Îrlanda welatê Ewrûpa yê herî xerab e ji bo dayîna mafê penaberiyê. Li gor YE'ê sala borî Îrlanda bersiva erênî daye ji sedî 4'ê kesên ku daxwaza mafê penaberiyê kirine. Saziyên mafên penaberan li Îrlanda hikûmetê rexne dikin û hikûmet jî dibêje: "Siyasetên me cihê rûmetê ne."
Beriya çend hefteya Hikûmeta Îrlanda hewl da hin penaberan veguhezîne navendeke çavdêriyê û li dij vê yekê jî penaberan xwepêşandaneke nerazîbûnê sazkirin. Ciwanekî Rojhilatê Kurdistanê bi navê Bêhruz Wekaşî ku ji sala 2006'an ve li benda wergirtina mafê penaberiyê ye dibeje: "Gelek kesên li vir rastî pirsgirêkên psîkolojî hatine. Em nikarin kar bikin û bixwînin." Parêzerê penexwazan Su Conlon jî dibêje: "Li Îrlanda bersiva neyênî li ser bingeha rast ji penaberan re nayê dayîn û kes jî nikare pêşgiriyê bike. Ji ber ku lêkolîna bi penaberan re tê kirin, nayê tomarkirin, loma parêzer nikare tiştekî bike." Berdevkekî Wezareta Dad a Îrlanda wan gotinan red dike: "Welatê me hejmara herî zêde ya penaberan wergirtine, lê ji ber dirêjbûna dema çaverêbûnê sal bi sal kêm dibe." Penaber dibêjin ku Hikûmeta Îrlanda bala xwe nade raporên bizîjkî û rê nade wan ku xwe întegreyî civaka Îrlanda bikin. Ehmedê Îraqî yê 18 salî jî dibêje dayîk û bavê wî mafê mayînê wergirtine: "lê daxwaziya min hatiye redkirin."
Li gor rapora Wezareta Dadê ya Îrlanda, hikûmeta wî welatî hewl dide proseya bersivdayîna penaberan lezgîntir bike.


Ciwanê Îraqî Ehmed

## Ji kîmyabarankirina Helebce

# “Saddam, E. H. Mecîd û H. Kamil berpirsiyar in”

Li nav sar û seqema bajarokê Aram ê Danîmarka Sogo, mêrekî 60 salî di nav agirê vegera li welatê xwe disincire. Ev mirovê şêst salî serokerkanê berê yê artêşa Îraqê, Nizar Xezrecî ye.

Di heyama serokwerkaniya wî de, bi saya serê guherîneke stratejîk ku wî pêşniyar kiribû, şer rawestiya. Wê dema hêzên parastina komarê bê agahdariya wî Kuweytê dagir kirin, Nizar Xezrecî hê serokerkanê artêşa Îraqê bû.

Di civînekê de li ber Saddam Huseyîn dibêje: "Emê vî şerî wenda bikin" û ji postê xwe hat dûrxistin.

Ew berpirsê herî bilind ê serbazî bû ku ji Îraqê derketibe, lê hewldana wî ya bidestxistina vîza da ji bakurê Îraqê derbas bibe, dozên liser careke din anîn holê ku li Kopenhagen bo tometa cîbicîkirina `tawanên şer` li Kurdistanê û bi taybetî bombebarankirina Helebce bi çekên kîmawî û operasyonên Enfal dijî wî hatin tomarkirin.

**Xesan Şerbel: Çîroka çekên komkuj çi bû?**

**Xezrecî:** Ew dosye li ba desteya pîşesaziya serbazî bû ku bi awayekî rasterast bi serok ve girêdayî bû. Tu peywendiya wezîrê bergirî û serokerkan pêve nebû. Haya me ji vejandina çekên kîmyayî û biyolojîk jî nebû.



**Em nikarin mijara çekên tevkuj ji hizra Saddam cuda bikin, ku baweriya wî bi hêz û tundiyê dihat**

**Hun di wê baweriyê de bûn Saddam hewl dabe bombeya atomî avabike?**

Erê hewl da. Sala 1981'an cihê serekî yê atomê li Îraqê ji aliyê hêzên asimanî yên Israilê hat kavilkirin. Piştre wî hawara xwe bir rêyên din ku ewqasî ne pêşketî bûn, ligel wêya jî çend pêdivî bi qaçaxî ji derve kirîn, lê kar ne hêsan bû. Bi guman im ku îmkana wî ya avakirina bombeyeke etomî hebe. Derbarê çekên kîmyayî jî Scott Ritter got ku pisporan zêdeyî ji sedî 59 ê wan dezgehên ku Saddam Huseyîn jimareke zêde ya pereyan liser avakirin û kirîna pêdiviyên wan xerc kiribûn, serobinor kirin. Saddam di nava xwe de, xwe wek serokekî bê mînak didît û bawer dikir ku Îraqeke bihêz, bi serokatiya wî dikare roleke mezin li navçê bilîze.

**Di şerê Îraq û Îranê de bo cara yekem kengî çekên kîmyayî hatin bikaranîn?**

Di destpêka 1980'an de wek bersivekê bo êrîşên Îranê bû. Bi piranî ji aliyê hêzên asimanî hatin bikaranîn, carna bi rêya mûşkan jî hat bikaranîn. Îraniya jî çekên kîmyayî bikar anîn, lê bi awayekî pir kêm.

**Hûn piştrast in ku Îranê jî çekên kîmyayî bikar anîn?**

Erê. Lê di wê dema ku firokeyên şer ên Îraqê asiman kontrol dikirin, êdî Îraniyan alavên din bikaranîn ku ewqasî ne bibandor bûn. Leşkerên Îraqî bi çekên kîmyayî yên Îranê hatine kuştin, lê bikaranîna van çekan ji aliyê Îraqê pir pêşkeftîtir bû. Li gor min, Îraqê bo cara yekem di sala 1984'an de çekên kîmyayî bikaranîn.

**Kî li Îraqê dikarîbû çekên kîmyayî bikar bîne û mêkanîzma bikaranîna wan çawa bû?**

Bikaranîna van çekan bi ‘derbeyên taybet’ ve girêdayî bû. Fermana bikaranîna wan tenê di destê Saddam Huseyîn de bû. Ev çek ji aliyê desteya pîşesaziya leşkerî dihatin dirustkirin, lê bi du rêyan dihatin bikaranîn: Hêzên asimanî yan çekên bombavêj, ku li ba hêzên taybet ên parastina komarê hebûn. Guhastina van çekan û şandina wan û dema teqandin û bikaranîna wan, tenê di destê Saddam de bû.

**Em dikarin bombebarankirina Helebce jî bixin heman çarçovê?**

Helebce bi fermana Saddam Huseyîn ket ber bombebarana asimanî. Elî Hesen Mecîd berpirsê bakur bû û desthilateke tevahî û ne asayî zeft kiribû. Îran êrîş anîbû ser navçê, çend berpirsên ewlekarî û hizbî ji Elî Hesen Mecîd re gotin Helebce ketiye destê Îranê, wî jî ew nûçe gihand Saddam. Dema Saddam ferman da ku `derbeyeke taybet` li Helebcbe bê xistin, wî bawer dikir wê zerereke mezin bigihîne Îranê. Derbe ji asiman hat weşandin. Di dema lêxistina Helebce de, hê neketibû destê Îranê û jimareke serbazên Îraqê lê mabûn. Çend serkirdeyên Kurd tekez kirin ku di nav qurbaniyên Helebce de termên gelek leşkerên Îraqê hatine dîtin. Haya fermandarê hêza ji wê navçê berpirs, ji derbê nebû. Herwiha haya min, wezîrê bergirî, cîgirê fermandarê giştî Ednan Xêrulla ji vê derbê nebû. Piştî derbe bidawî hat, ji nûve em pê hesiyan. Fermandarê feyleqê yekem, Kamîl Sacid şer li wê deverê birêve dibir û çend yekîneyên wî yên leşkerî li Helebce bûn. Ev derbe di 16'ê Adara 1988'an de bû. Tê bîra min ku Kamîl Sacid têkilî ligel min kir û tiştek derbarê vê derbê nedizanî. Saddam di sala 1998'an de, Sacid darve kir.



**Nîzar Xezrecî dema ku serokerkaniya Artêsa Îraqê dikir**

**Hûn wek serokerkanê artêşê bûn, Saddam derbarê çekên kîmyayî de ligel we neaxifî?**

Na. Ligel her fermandarekî liser çekên taybet bi hêza wî daxifî. Wî dixwest her kes bi karê xwe mijûl bibe û her fermandarek tenê ji çekên ku di bin fermana wî de ne, haydar be. Saddam tenê hemû tişt dizanîbû.

**Kê berpirsê bernama atomî bû?**

Desteyeke ser bi serok berpirsê bernama atomî bû. Heman dosya li ba desteya pîşesaziya serbazî û Huseyîn Kamîl jî hebû.

**Berpirsiya kîmyabarbankirina Helebce di situyê kî de ye?**

Sê kes: Saddam Huseyîn ku fermana bikaranîna çekên kîmyayî da, Elî Hesen Mecîd ku agahiyên xelet guhast in û pêşniyar kir derbeyeke taybet bê cîbicîkirin. Herwiha Huseyîn Kamîl jî berpirse bi wê yekê ku çek dirustkirine. Elî Hesen Mecîd di operasyonên Enfal de jî çekên kîmyayî bikar anîn.

**We beşdarî di şerê dijî Kurdan de kir?**

Ev 40 sal in Kurd şerê hikûmetê dikin. Hemû endamên artêşa Irasqê di qonaxekê ji qonaxan de tevî wî şerî bûn. Dema li navçeya bakur bûm, artêş ligel çekdarên partizan rûbirû dihat. Lê êrîşên Enfal ku dijî kesên sivîl bûn, ne ji dûr û ne ji nêzîk ve û peywendiya min ligel wan nebû.

**Peywendiya we ligel pismamê Saddam, Elî Hesen Mecîd, çawa bû?**

Dema bû berpirsê navçeya bakur min ew nas kir, zêdeyî carekê me hevdu dît. Bargeha wî li Kerkûkê bû, bargeha min jî li wir bû. Hemû taybetmendiyên xerab lixwe girtibûn û tenê pişta xwe bi tundûtûjiyê girêdida. Kêfa wî ji nazî û nîmet û pasevanan re dihat û pir dixwest dest deyne ser xak û samanên xelkê. Hêza xwe ji wêya dibir ku pismamê Saddambû.

**Kêfa Saddam ji kîjan serokî re dihat?**

Kêfa wî ji Stalîn û awayê rêvebirina wî di şerê cîhanî yê dûyem de, re dihat. Saddam kitêbeke Sovyetî liser fermandarên artêşê dabeş kir ku behsa jîriya Stalîn di rêvebirina şer de, dikir. Saddam xwe wek serkirdeyekî mezin didît û hewl da di dema şer de çav li hinek gavên Stalîn bike, lê bi awayekî têkdayî çav li wî kir. Herwiha, wek Stalîn hertişt zeft kir bi heman awayê Stalîn. Saddamxwe ji Ebdulnasir mezintir didît.

**Hun kengî bi dagîrkirina Kuweytê hesiyan?**

Şeva bûyerê li mala xwe razayî bûm. Sibehê sekreterê giştî yê fermandarê giştî Ferîq Elaeddîn Cenabî telefona min kir û daxwaz ji min kir herim fermandariya giştî, dema çûm nivîsîngeha wî, got: "Me Kuweyt bi tevahî dagîr kir." Min pirsî: "Çawa", got: "Hêzên parastina komarê û hêzên asimanî û firokevanên artêşê dest danîn ser tevahiya Kiwêtê." Piştî demjimêrekê Wezîrê Bergiriyê Ebdulcebar Şenşel gihişt wir û nûçe bihîst. Bîne ber çavê xwe, ew serkêşî bi artêşê tê kirin bê ku haya wezîrê bergiriyê û serokerkan jê hebe.

**Kî plana dagîrkirina Kuweytê danî?**

Saddam bi amadebûna Huseyîn Kamîl û Elî Hesen Mecîd planeke taybet danî.

**Çima di sala 1996'an de we biryar da hun ji Îraqê bar bikin?**

Piştî bextreşiya hat ser Îraqê jiber dagîrkirina Kuweytê, min hêvî kir Saddam Huseyîn siyaset û helwêstên xwe biguhere lê hêviya min pêk nehat, gihiştim wê baweriyê ku Saddam dersan wernagire. Loma min hest kir divê êdî li Îraqê nemînim.

**Hun çawa derketin?**

Nêzîka şeş mehan lê difikirîm, mala min hemû bi mîkrofonan hatibû çandin, loma me gotûbêjên xwe liser ban bi dizî dikirin.

Sala 1995'an min xwest kurê xwe bişînim derve da peywendiyan ligel hinek kesan bike, lê dema gihabû ser sînor dezgeha ewlekariyê ya taybet navê wî di lîsta navên kesên ku nabe sefer bikin, dîtibûn jiber ku kurê berpirsekî bû nedibû here derve. Dûre keça min a biçûk ku niha li Amerîka ye peywendî ligel min kir, keça min liser navê mêrê xwe karîbû sefer bike. Zavayê min got, jimareke efserên Îraqê yên li derve dixwazin karekî bikin û ligel hinek aliyên navdewletî jî axifîne û tenê bersiva te dixwazin ka tu amade yî yan na. Razî bûm û min dest bi danîna plana derketinê kir û di 14'ê Adara 1996'an de derketim.

**Bi kîjan rêyê?**

Yekem car min ligel kurên xwe li ser planekê lihev kir ku ji pasevanan re bêjin em diçin serdana keskî û emê hinekî dereng bimînin. Wê rojê em çûn, lê jiber xeletiyekê di demê de me nekarî wî kesî bibînin û em vegeriyan mal. Di heman demê de, Huseyîn Kamîl ji Urdunê vegeriya bû. Tirsiyam tiştek bihîstibe û hatiye eşkere bike lê zêde dirêj nekir ku nûçeya kuştina wî belav bû. Dûre, me ji pasevanên xwe re got, merivekî me li Diyala miriye û divê em herin şîna wî. Bi du otombîlan em çûn û me berê xwe da Musilê û li wir em çûn ba berpirsekî û me dûre berê xwe da Akrê û du şevan li wir man û piştre çûn Zaxo û ji wir bo Tirkiyê û piştre Urdun.

*Hevpeyvîn: Xesan Şerbel*

# Berfîn di Tîrmehê de jî zîl didin



Eger îmkanên Berfînê hebin, ew dixwaze ji niha ve jiyana xwe bi muzîkê re mijûl bike

**Mehmet Sebatli**

Tiştên nîvco rojek tê xwe dîsa tînin bîra mirov û bi mirov re wê helwestê çêdikin da ku ew bên temamkirin. Di jiyanê de bûyerên trajîk ên bi êş ku bi mirovan re hesta kêmasiyê avadikin, ji hunerê re dibin malzemeya gelek bi sûd. Ango di jiyanê de pirsgirêk di hunerê de dibin serkeftin. Eger malbata wê ne feqîr bûye, eger wê dibistana xwe di nîvî de nehîştibana, eger nehata Ewrûpayê, eger malbata wan li Ewrûpayê ji hev belav nebûya, wê gavê di Koma Arîn de wê ne keçeke dengxweş a bi navê Bêrîvan hebûye û ne jî ev klîpa nû 'Berfîn' wê bihata kişandin. Pirsa me ya klasîk a wek, gelo têkiliya we bi muzîkê re çawa çêbû, Bêrîvan Utkun wiha dibersivîne: "Hinek dibêjin ji sifrê, lê ya min, ji bin sifirê dest pê kir."

Têkiliya wê bi muzîkê re beriya deh salan, di sala 2000'an de, di nava Koma Arîn de dest pê kiriye. Jiyana ku di bin sifrê de ye, tevî pirsgirêkan ve hêdî hêdî dimeşe. Koma hunerê jî wisa. Piştî albûma bi navê "Bengiya Rojê" Koma Arîn jî belav dibe. Bêrîvan jî berpirsiyariya malbatê dide ser pişta xwe. Sê birayên biçûk û dayikeke nexwaş. Lê lingekî wê di nava refên hunerê de dimîne; di albûmên çendîn hunermandan de bi wan re duet distire.

Bêrîvan wiha êdî tê nasîn; birayên wê mezin dibin, karê li ser milên wê sivik dibe û rêyeke din tê pêşiya wê: Bi serê xwe meşandin. "Dema ez bi Koma Arîn re dixebitiyam, em li gelek deverên Ewrûpayê tevlî konser û bernameyên televizyonan dibûn. Lê bala min kîşand ku em xwe dubare dikin û heta ku em li Ewrûpayê bimînin jî wê dubarekirin bidome."

## Berê xwe dide welat

Bêrîvan serpêhatiya xwe wiha didomîne: "Piştî demekê min bi xwe ji muzîka xwe tam nedistand. Tiştek kêm bû. Weke ku straneke bê dîsgotin; lê stran bi dîsgotinê dibe stran."

Wê ew kêmasî dîtibû! Divê here welat! Divê bikeve nava gel, bibe stran û winda bibe. Di nava gel de windabûna yekem, ji aliyê din ve, xwe dîtina yekem, di sala 2006'an de di Festîvala Mexmûrê de pêk tê. Herwiha cara yekem bû ku çûbû Başûrê welat. Konsera yekem, serdana welat a yekem, gava yekem a bê kom a bi serê xwe "Wek xewnekî bû; min gav bi gav daxwazên xwe pêkdaniya. Berdewamiya wê hat: Cara duyem di salan 2009'an de ji bo çendîn konseran ez çûm Bakurê Kurdistanê."

"Ji bo pîrozbahiyên 8'ê Adarê û Newrozê diçe Amed, Şirnex, Cizîr û Êlîhê, beşdarî konseran dibe. Îsal dîsa çûye: Li Sêrt, Wan, Norşîn û Bazîdê di nava gel de stranan dibêje û winda dibe. "Di 8'ê Adara îsal de ez hatim vexwendin ku dîsa herim Hêrêma Kurdistanê. Li Mexmûrê, Silemaniyê û Halepcê konseran dide."

## Îro klîp, sibê albûm

Di MMC û ROJ TV de klîpên wê tên weşandin. Klîpên ku bi Koma Arîn re kişandine, yên ku bi alîkariya Hozan Dîno kişandiye (Gazinc), tên weşandin, lê ev jî ne bes in.

Êdî berê xwe dide cihê ku li wir hatiye dinyayê, Xelfetiyê. Ew navçeya ku ketiye bin ava Firadê; ew navçeya ku dîmenên wê di televizyonan de tune ne. Du hefte berê Bêrîvan ji wir vegeriya. "Xelfetî ji bo min wek bihûşta veşartî ye. Hem cihekî xweş e, hem jî cihekî taybet e. Klîpa yekem ku li navçeya Xelfetiyê tê kişandan a min e, navê wê Berfîn e. Wê van rojan di MMC û ROJ TV de bê meşandin." Wê di heman demê de li bihûşta xwe ya veşartî sê klîp amade kirine.

Di dawiyê de mirov ji xwe dipirse ka çî têkilî di navbera meha Tîrmehê û Berfîna ku ji bin berfê serê xwe derdixe, heye. "Berfîn çîçekek taybet e, sermayê, berfê nas nake û sere xwe derdixe, agahiya biharê dide der û dora xwe: "Me di klîpê de dîmenên ji gundê Amarayê jî kişandin; ew zarokên ku kevokên spî difirînin jî, ji cihê ku roj dertê, silav dişînin cihên dûr."

Piştî van sê klîpan xuya ye ku amadekariya albûmekî dike. Eger ku îmkanên wê hebin, jiyana xwe ji niha ve dixwaze tenê bi muzîkê re mijûl bike û wiha derbas bike. Bêyî ku mecbûr bibe kar bike, tenê bi muzîkê...

Di dawiya axaftina xwe de Bêrîvan destnîşan dike ku di hunera kurdî de dengê jinan gelek kêm e. Ev yek bi taybetî ji bo Rihayê rast e. Welatê ku dengê mêrên wan gelek xweş, lê dengê jinên wan naçe ti kesî...

### Kî ye?

Bêrîvan Utkun di sala 1981'an de li navçeya Rihayê, Xelfetiyê hatiye dinyayê. Ji ber pirsgirêkên aborî piştî dibistana seretayî nekarî xwendina xwe bidomîne. Di salan 1995'an de tevî dayîk û sê birayên xwe koçî Swîsreya ku bavê wê li wir dijî, kirine. Li Swîsreyê perwerda xwe sê sal jî didomîne û dest bi karê kuaforiyê dike. Niha wek karkerek bi dîploma di branja elektrîk-teknîk de dixebite. Lê bi gotinê wê "Ez tenê bi muzikê dikarim hestên xwe bidim der û tenê di muzîkê de xwe dilşad dibînim."



---

## Belgefîlmeke nû li ser Herêma Kurdistanê

# "Bihûşta Heft Eşîran"



Derhênrê Îspanî, Israel Del Santo

**Zinar Ala**

Derhênerê Îspanî, Israel Del Santo, belgefîlmeke bi navê "Paraíso de 7 Tribus" kişand. Belgefîlma "Bihûşta Heft Eşîran" berê kameraya dide Herêma Kurdistanê û gelek kesayetiyên siyasî û civakî pêşkêş dike. Du şîrketên Îspanî wek Mundis Production û New Atlantis produksiyona vê fîlmê dikin; film herwiha ji aliyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve jî tê destekkirin. Rûdawê xwe gihand derhênerê fîlmê, Isreal Del Santo, û ev hevpeyvîn pê re çêkir.

**Rûdaw: Gelo eleqeya we ji bo kişandina vê belgefîlmê çawa çêbû?**

**Del Santo:** Ez Îspanî me, ev welatekî pir cuda ye, li vir her kes nizane Kurd kî ne, herwiha kêm kes doza vî gelî nas dikin. Daxwaza min ev bû ku welatê min baş bizanibe netewa Kurd kî ye. Min herdem digot, eger em piştî nîşandana belgefîlmê bighêjin encama ku gelê Îspanî bizanibe Kurd kî ne û nêrîneke xweş li ser wan bistînin, wê demê em digihêjin aramnca xwe.

**Rêxistina Lêborîna Navnetewî (AI) di rapora xwe ya dawî de dibêje ku hinek rojnamevanên serbixwe pêrgî êrîşên fîzîkî hatine ji aliyê kesên pêwendîdar bi hêzên ewlekariyê. We çawa atmosfera azadiya ramanê li herêmê dîtibû?**

Divê ez diyar bikim ku Hikûmeta Herêmê destûr dabû min ku ez her tiştê bi dilê xwe bikşînim, ez bi serbestî di nav herêmê de digeriyam. Ji min re ti sînor nehatin danîn, hikûmet baş dizanî ku dawxaza min pêşkêşkirina wêneyeke erênî bû li ser Kurdistanê.

Bi rastî jî kişandina belgefîlmê li Herêma Kurdistanê bê astengî derbas bû. Lê li welatên din ên aram û bê alozî û wek demokratîk tên nîşandan, di karê xwe de weke rojnamevan ez rastî astengiyan hatim.

**Ji bo çi stran û mûzîka Şivan Perwer di vê fîlmê de cihekî mezin digrin?**

Wek adet di gelek belgefîlman de çêdibe çîrokbêj bi wezîfeya hewaldana bûyeran radibe, lê di vî domkumentarî de çîrokbêj nîne, li şûna çîrokbêj stranên kurdî bi rola çîrokbêjiyê radibin.

Hevaleke min ji Hewlêrê ji min re behsa hin stranên xweş kiribû, stranên bi kul û êş ku li ser têkoşîn û doza gelê Kurd hatine çêkirin. Dema min wan guhdar kirin, pir xweş bi min hatin û stranên başûrê welatê min anîbûn bîra min, stranên Flamênko. Ew kilamên ku ji hinavê mirovan têne xwendin û qêrîna dengbêjan ji kurahiya hestan der tê.

**Eger ez ne şaş bim, navê film ji perçeyeke strana "Zembîl Firoş" hatiye girtin, ku bi dengê herdu hunermendên navdar Şivan û Gulistan Perwer hatiye xwendin?**

Rast e, navê film ji strana Zembîl Firoş hatiye wergirtin. Her du mûzîkvan jî bi dilxweşî mafên stranên xwe diyarî me kirin heta ku di belgefîlmê de bêne bicihkirin. Kalemêrekî Kurd ji min re li ser çiyakî axivî, navê wê çiyayê baş nayê bîra min, li wî çiyayî salê carekê heft eşîran ji Kurdistanê li hev dicivîn. Ev destan ne navdar e di nav Kurdan de. Dema min strana Zembîl Firoş bihîst û min nas kir ku dengbêj behsa wî çiyayî dike, wê demê min hizir kir ku wê ji bo film bibe navekî xweş.

Belgefîlm di meha gulanê de di festîvla bi prestîj Cinestra li bajarê Valencia hatibû nîşandan.

*Ji bo temaşekirina fîlmê di internetê de: http://vimeo.com/10591258*

Dilşad Seîd:

# "Min li cilêtan xist û hînê muzîkê bûm"

Cara yekem bû Kurdên Munîhê diçin konsereke muzîka kurdî ya bê stran û govend. Konser bi hevkariya xwendingeha Rojîn, Xeyrî Elî Reşo, Dr. Nehro Kerîm û Komela Kultûrî ya Munîh û şarevaniya bajêr hatibû amadekirin. Sê hunermendên behremend ên Kurd hatibûn vexwendin: Dilşad Seîd, bilûrvan Faruq Mîrza Sedîq, defjen û dûmbekjen Hadî Elîzade. Di vê konserê de, çend kesên biyanî yên ne Kurd jî dihatin dîtin. Ebu Zeyneb kesekî Ereb e ku li vê konserê amade bûbû: "Dilşad ê hemû Îraqê ye û bawer nakim ji bajarê Faw heta Zaxo kes hebe Dilşad nas neke." Navbirî gelek agahiyan derbarê hunera kurdî dizane û dibêje: "Hunera kurdî, hunereke bilind e û gelek jê wenda maye. Muzîk zimanê millet e û Dilşad jî milkê mirovahiyê ye."

Di dawiya konserê de jî, Rûdawê ev hevpeyvîn li gel Dilşad Seîd kir:

**Rûdaw: Konser çawa birêve çû?**

**Dilşad Seîd:** Bi hatina gel ez pir kêfxweş bûm. Hat xuyakirin ku kêfa piraniya wan ji muzîkê re tê, nemaze ku bêdeng û bi baldarî guhdariya muzîkê dikirin. Pir ji wan razî bûm.

**Dîrokek diyar a muzîkê heye gelo?**

Muzîk ji her tiştî kevintir e. Piştî axaftinê, yekser muzîk peyde bû. Kevnewarên ku hatine dîtin vêya îspat dikin. Kurdistan di vî warî de pir dewlemend e, herwiha li kevnewarekî Kurdistanê, navê wê nayê bîra min, amûrên muzîkê hatine dîtin.

**Wek tê zanîn pêştir amûrên bilûr, tembûr, tepl û defê yên Kurdan hebûn, lê kengî violîn derbasî Kurdistanê bû?**

Berî ku keman li Ewrûpa bê dirustkirin, li Rojhilata Navîn peyde bû ku jê re digotin `Rebab`. Piştre bû keman an violîn û dûre nêzîka sala 1520'an bû kemançeya îro. Berê li navçên ku Kurd, Ereb û Fars lê jiyane Rebab hebû, ku destpêka derketina kemanê ye.

**Pêşketina teknîkê çi bandor li ser muzîkê kir?**

Dilşad Seîd: Teknîk roleke mezin di hemû waran de dilîze. Di warê muzîkê de jî, rola wê heye. Niha berhemên muzîkê bi awayekî baştir tên tomarkirin û teknolojiya demê kurt dike û muzîk û amûrên wê bipêş dixe.

**Di dema ku li navçeya Behdînan muzîk ne pêşketî bû, we komeke baş bi navê Koma Duhokê ya Muzîkê damezrand.**

Ez di sala 1979'an de mamosteyê muzîkê bûm. Min ji çend endamên muzîkjen ên xwendingehan û çend kesên din kom saz kir. Em beşdarî festîvalekê bûn û me xelata yekem wergirt. Piştre di sala 1979 – 1980'an de me Koma Duhokê damezrand. Em çûn Hewlêr û Silêmaniyê, du salan pey hev me xelata yekem wergirt.

**Projeya dirustkirina akademiya muzîkê li Kurdistanê li ber destê we bû, hûn gihiştin ku?**

Di destpêkê de, bi germî hatin pêş û soz dan me. Ji min re gotin li Kurdistanê bimîne û neçe diaspora. Ji bo akademiyê min zeviyek li Duhokê wergirt, lê mixabin ji ber hinek meseleyên din proje hat paşxistin.

**Hêvî heye ku akademî bê avakirin?**

Ne di destê min de ye, lê di destê aliyên peywendîdarên Kurdistanê de ye.

**Hûn li Ewrûpa dersên muzîkê didin û têkiliya we li gel civaka wan heye. Hûn rewşa muzîka kurdî li gor muzîka cîhanê çawa dibînin?**

Nabe rewş wiha bidome. Divê em bi awayekî zanistî û akademîk wek tevahiya cîhanê muzîkê bixwînin û bipêş bixin.

**Hunermend Mezherê Xaliqî navendeke keleporî li Kurdistanê damezrandiye, peywendiyên we li gel hene?**

Haya min ji vê navendê heye û çûm Silêmaniyê seredana wê. Destên wî xweş bin ku li Duhokê jî tiştekî wiha kiriye. Min jî berî sê – çar salan li Duhokê karekî bi vî awayî kir û hevkarên me li wir in û muzîka kurdî kom dikin.

**Hunermend Enwer Qeredaxî muzîkjenekî navdar û xwedî şiyan e. Dema hûn derketin, hinek kesên ji Silêmaniyê bo pesinandina we digotin `Enwer dixe bêrîka xwe`, we ev bihîstibû?**

Na, min ne bihîstiye û mesele ne wiha ye. Kekê Enwer hunermendekî pir mezin e, rêza min jê re heye. Min di destpêka karê xwe yê muzîkê de, herdem parçeyek muzîka kekê Enwer dijeniya. Ruhiyeta Enwer taybet e û herdem ew hunermendê pir mezin e ku hêja ye mirov serê xwe pê bilind bike.

**Başûrê Kurdistanê di bin bandora muzîka cîranên xwe de maye, di rewşeke wiha de çawa em dikarin huner û muzîka kurdî ya resen biparêzin?**

Rast e. Min li konser û civîna Bonn û Diyarbekirê jî heman tişt got ku muzîka kurdî pir dewlemend e. Ger haya Kurdan ji muzîka wan hebe, pêwîstiya wan bi çavlêkirin û dubarekirina muzîka gelên din namîne. Cîranên me çavlêkirinê dikin, em jî çav li wan dikin. Divê em kultûra xwe ya muzîkê biparêzin. Ne dijî wêya me ku Kurd guhdariya muzîka gelên din bikin û bijenin. Lê mixabin me beşekî zêde ji muzîka xwe ya resen jidest daye.

*Hevpevîn: Mistefa Çiwartayî*

### Kemançeya Dilşad ji Duhokê heta Yanî

*Sala 1958'an li Duhokê jidayik bûye. Piştî xilaskirina peymangeha hunerên ciwan li Bexda, demekê li radyo û ekrana Bexda kar dike û di heman demê de mamosteyê muzîkê bû jî. Sala 1979'an Koma Duhokê damezrand û bû serokê wê. Bi sedemê strana Nêrgiz Nêrgiz ku tê de bi awayekî ciwan muzîkê dijene, Dilşad Seîd tê naskirin û nav û dengê wî belav dibin. Sala 1984'an, ji bo bidawîanîna xwendina xwe ya bilind di warê muzîkê de diçe Brîtanya û li zanîngeha Wells diploma werdigre û piştre berê xwe dide Avusturyayê. Li piraniya welatên Ewrûpa û li gel gelek komên orkestra yên Ewrûpî konser lidar xistine. Herwiha li gel muzîkvanê cîhanî yê navdar Yanî muzîk jeniye. Niha Dilşad Seîd li zanîngeheke Avusturyayê dersên muzîkê dide.*



Wêne: Rûdaw

Ebu Zeyneb: Muzîk milkê gelan e, Dilşad jî milkê mirovatiyê ye

### Yekem Kurd im ku bawernameya N.R.A.M bidest dixe

Ji zaroktiyê min dest bi muzîkê kir. Hingî mala me li Telefer bû, temenê min 5-6 salî bû, cara yekem min bi xwe amûreke muzîkê ya sade bi cîlêtên kurkirina rihê dirust kir, min pênc cîlêt di rêza hev danîn û min li wan dida û muzîk derdixist, dema bavê min hat odê got: "Xuya ye tuyê bibî hunermend." Piştre min li têlên telefonan da û dûre min yekem car Ûdek bi destê xwe girt ku heta wê demê min nedîtibû, lê min awazeke Erebî bi Ûdê jenî. Min li Londra mastera muzîkê wergirt ku jê re dibêjin N.R.A.M. ku li Îraqê doktora li serê didin mirov. Di nav Kurd û Ereban de, kesê yekem im ku vê bawernameyê bidest dixîne.

## Aktorê herî herî baş ê Îraqê di sala 2010'an de Şiwan Etûf

**Hewlêr (Rûdaw ) -** Xelata îsal a Rêxistina Îraqa Îro wê ji aktorê Kurd, Şiwan Etûf, re bê dayîn ku di rapirsiyekê de dengê herî zêde bidestxistiye.



Di vê derbarê de Şiwan Etûf ji Rûdaw re ragihand ku di dawiya îsal de li Hewlêrê wê xelata xwe wek aktorekî Kurd di asta Îraqê de bistîne. Wê rêxistinê piştî nirxandina karên çend aktorên Îraqî û Kurdistanî ji aliyê lijneyeke pispor, biryar stand ku navên wan bixe nav rapirsiyekê û welatî deng ji wan re bidin. Li gor rapirsiyê şanoker û aktorê, Kurd Şiwan Etûf, dengên herî zêde bidest xistine û nasnavê lîstikvanê herî baş ê Îraqê di sala 2010'an de bidest anî. Rêxistina Îraqa Îro ku Navenda wê ya sereke li Herêma Kesk a Bexda ye, ji sala 2004'an û pê ve ji bo pêşxistina ruhê pêşbirkê di berhemanîna şiyanan de û derxistina wan di Îraqê de, kar dike û hemû salekê jî rapirsiyê li ser kesayetiyên siyasî, hunerî û aborî yên Îraqê dike. Şiwan Etûf cara yekemîn sala 1988'an dest bi karê şanoyê kiriye, di sala 2010'an de rolê sereke di filmên "Cihek ji bo lîstikê, Bêhna şêvê, Roja ku Baba Noel Giriya" û kurtefîlmê 'We spas dikim' lîstiye.

Got: “Celladê îro por zer û çav şîn in” û ...

# Piştî telaqdanê xwe xeniqand

Soran Behaedîn Hewlêr

Roja ku Reûf jidayik bû, dayika wî pê re jiyana xwe jidest da. Jiyana Reûf wiha destpê kir û bi dawiyeke trajîktir, bidawî hat. 20 Rojan piştî cudabûna wî ji jina wî, li mala xwe ya tenê xwe daleqand û dawî li jiyana xwe anî. Hevalekî Reûf ê nêzîk diyar dike ku navbirî di nameya xwe ya dawî de bo jina xwe wiha nivîsandibû: "Va ez diçim gorê, gerdena te azad dikim, hêvîdar im tu jî xweşbext be."


Wêne: Rûdaw
Reûf Ebdulselam Elî Xetîbî

Reûf Ebdulselam Elî Xetîbî (29) li Rojhilatê Kurdistanê, li gundekî nêzîkî bajarê Urmiyê jidayik bû, berî deh salan hatibû başûrê Kurdistanê û bûbû pêşmergê Hizba Demokrat a Kurdistanê ya Îranê (PDKÎ) û ev dema heft salan bû ligel Ş. Zewicîbû. Piştî cudabûna wan a yekcarî bi 20 rojan; Reûf di 21’ê Tîrmehê de li mala xwe li taxa Azadî ya Hewlêrê, xwe xeniqand û jiyana xwe bidawî anî.

Reûf xwendina amadeyî xilas kiribû, karîkaturîst û dîzaynerekî jêhatî bû. Li Wezareta Rewşenbîrî fermanber bû û di heman demê de yek ji dîzaynerên heftenameya Rûdawê bû û heftê du rojan li Rûdawê kar dikir.

Roja ku Reûf jidayik dibe, dayika wî hê wî tîne dinyayê, jiyana xwe jidest dide. Reûf 5 salan li ba pîrika xwe dimîne, piştre bavê wî jinekê tîne. Cefer Reşîd Hesen ku ji temenê 5 salî ve ligel Reûf dijî û hevalê wî yê herî nêzîk e û bi hevre hatibûn Başûrê Kurdistanê dibêje jiyana Reûf bi bextreşiyan tije bû: "Lê Reûf herdem bêdengî hilbijart. Reûf herdem digot pirsgirêka min trajîk e, min jê re digot pirsgirêka te normal e, lê tu mezin dikî. Lê wek hat xwiyakirin bi rastî jî trajedya bû."

Wek Cefer jî anî ziman, Reûf bi rêya e-mailekê ku bo jina wî hatiye, jê re xwiya bûye ku peywendiya jina wî ligel kesekî din heye, ev gûman jî bandoreke xerab liser Reûf dihêle. Cefer dibêje: "Ligel jina wî axifîm, got di van heft salan de min ji Reûf hez nekiriye û tenê mebesta min ew bû ji mala bavê xwe derkevim, niha daxwaza telaqê jê dikim."

Cefer wiha dirêjî bi axaftina xwe da: "Reûf herdem digot hêviya min di jiyanê de zarokekî min çê bibe û wê hembêz bikim, lê jina min naxwaze, bila ew jî bi qurbana wê be jiber jê hez dikim."

Navbirî dide zanîn ku piştî jina wî daxwaza telaqê jê dike, pisîkolojiya Reûf xerab dibe û qet naxwaze jina xwe berde: "Reûf 3-4 caran hewl da xwe bikuje, her carê ligel diaxifîm, min jê re digot jina te bi vî rengî ji te hez nake, ligel jina wî jî axifîm û ew pêdagir bû liser telaqê."

Li gor gotinên Cafer, Dadwer ji Reûf re gotiye, ji ber hevsera te daxwaza cudabûnê dike, tu mafek nakeve ser wê û dikarî mafê xwe jê werbigrî, lê Reûf ewqas ji hevsera xwe hez kiriye, piştî berdanê jî jiyana hevsera wî rastî pirsgirêkan neyê û wiha dirêjî bi axaftina xwe da: “Reûf got ez hez nakim jina min piştî min jî rastî pirsgirêkan were, loma min hemû zêr dan wê.”

Reûf û Cafer çend rojan bihev re dimînin. Reûf hemû navmala xwe difiroşe, piştî telaqdana hevsera xwe, pîskolojiya wî gelek tevlihev dibe û çend car hewla xwekuştinê dide: carekê damara mezin a destê xwe dibire da ku tûşî xwînberbûnê be û bimire: “Reûf di dema birîna destê xwe de heta hişê wî mabûn filmê xwe kişandibû û digot wateya wê xwînê ew e ku zimanê min nekariye bêje çi derd û kederek hebûye, lê xwîna min wan gotinan dike.”

Reûf ku berê li taxa Nûseran a bajarê Helêrê dirûnişt, du rojan berî xwe bixeniqîne, malek li taxa Azadî ya Hewlêrê kirê girtibû û li wir jî biryara dawî dide. Meytê Reûf di tenêtî û bêkesiyê de zêdeyî rojekê di wê mala dergirtî de dimîne heta karmendên Wezareta Rewşenbîrî li pey wî diçin û piştî peywendiyeke zêde bi telefona wî, demjimêr 11’ê nîvroya roja 22’ê Tîrmehê cenazê wî hat dîtin. Cafer ku wê rojê li Koyê bûye, wiha dibêje: “Dema diçin wir, temaşe dikin deriyê jora wî daxistî ye, bi neçarî Polîs pê dihesînin û fermana Dadwer werdigrin da ku derî bişkînin, wê demê zêdeyî 20 demjimêr bû miribû.”

Ligel wêya Cafer bawer e ku nediviya Reûf qet ji bo wî jinê xwe bikuje, lê ji zimanê Reûf dibêje: “Digot ez vê derdê ji ber wê dikşînim ku çawa mirov dikare di hemû rûyekê de celad be û tawanan li dijî mirovan bike, berê celad bi kêran dihatin, lê îro bi porê zer û çavên şîn tên.”

# Qumar li Kurdistanê jî malan wêran dike

Rêkan Xefûr Silêmanî

Dema Seywan fêrî qumarê bû, tenê li ser pereyê kêm qumar dikir, lê di encamê de hevsera xwe jî ji dest da. Seywanê 32 salî sibehê heta êvar li benda sindoqa xwe ya boyaxkirinê dirûne û çaverê dike kesek were û solên wî/ê boyax bike, dema dibe êvar jî, diçe gazînoyekê û perê ku rojê bidest aniye, wir bi qumarê winda dike: “4 sal berê ez bi riya hevalekî fêrî qumarê bûm û niha jî nikarim dest jê berdim.”

Ji ber wê rewşa ku rastî Seywan hatiye, hevalên nebaş rexne dike. Seywan dema li wan rojan difikire ku piştî karkirinê bi dilek xweş vedigeriya mala xwe û ligel hevsera xwe nan dixwar û gotinên xweş dikirin, gelek ji xwe hêrs dibe: “Lê niha tenê bo nivistinê diçim malê, jî sedema qumarê hevsera min jî li min veqetiya ye.”

Qumarbaz li Kurdistanê eskere nalîzin û heta xwediyê gazîno û cayxaneyan jî nizanin, di dikanên wan de qumar tê kirin. Herwiha cîhên taybet ên qumarê jî hene




### “Min di nav 3 seatan de zêrên jina xwe wenda kir”

Çendîn kesên din li bajarê Silêmanê şibê Seywan bûne goriyê qumarê û ligel jidestdana serweta xwe, hevdem malbatên wan jî hatine hilweşandin. Cafer M.yê 35 salî, niha bûye qumarbazeke navdar û ji ber vê yekê di nav hevalên xwe de bi Rovî tê naskirin û li gor hevalên wî, Cafer herî kêm di qumarê de têk diçe. Cafer wiha axifî: “Dema min dest bi qumarê kir ez 25 salî bûm, min gelek jê hez dikir û wiha dizanî hemû dinya bo min e.” Lê piştî hilweşîna malbata wî û jidestdana alevên nav malê, tenê mabû zêrên hevsera xwe jidest bide: “Min di sê demjimêran zêrên hevsera xwe jidest dan.” Cafer dide zanîn, ewqas ligel xelkê lîstika qumarê kiriye ku niha hîn bûye çawa fêlan li wan kesan bike ku pê re dilîzin û karekê bike kes nekare biser wî de serkeve.

Cafer di dema borî de ku qumar kiriye, gelek tiştên giranbuha ji dest dane: “Min erdeke 150 mq hebû ku ji bavê min wek mîrat bo min mabû, winda kir, gelek car jî min pere, otomobêl û zêr û tiştên din jî winda kirine.”

Cafer asayî dibîne ku di qumarê de winda bike û nerîna xwe wiha tîne ziman: “Qumar corek lîstik e, qezenckirin û windakirin jî tê de heye.” Lê eşkere dike, niha rewşa wî a darayî baş e.

Kazim Ebdula ê 41 salî yek ji wan qumarbazan e ku herî zêde winda dike û dibêje: “Nêzîk 4 sal e hînî qumarê bûme. Min ewqas pere winda kir ku nayê hesibandin, niha ku bi te re diaxivim li ser 1000 dolar qumarê dikim û piştrast im ku wê rastî jidets bidim.”

Lê berevajî piraniya qumarbazan, Serdeşt Cemal (33), dewlemend bûye û nêzîk 5 sal e qumar dilîze. Serdeşt da xwiyakirin: “Min di pênc salan de serweteke zêde kom kiriye”, navbirî pir car li ser vê yekê fikirî ye dest ji qumarê berde, lê dibêje: “Nikarim dest jê berdim, qumar tevlî xwîna min bûye.”

### Sedemê wêrankirina malbatan

Bo zêdebûna bûyeran, Rûdawê peywendî bi Asayiş û Polîs Nehêlana Tawanan re çêkir, lê her yek ji wan saziyan gotin girêdayî yê din e. Çavkaniyekê ji Polîsê Silêmaniyê ragehand: “Girtina qumarbazan bê feyde ye, ji ber ger bên binçavkirin jî, piştî çend rojan bi rehînê tên azadkirin.”

Lêkolînerekî civakî diyardeya qumarê wek sedemek bo wêrankirina malbatan binav dike û dibêje di qumarxaneyan de nehêniyek heye: “Kesên cara yekemîn diçin wan cîhan, qumarbaz bi awayekê pê re dilîzin heta bikare çend caran qezenc bike, ji bo ku fêr be û li ser wî karî berdewam be û nekare dest jê berde.”

Li ser kolana Îstîklala Taksîmê kafeyeke Kurdan:

# Kafe Ada


Wêne: Rûdaw
Umît Sevîlgen

*Kurtenûçe*

Pêşniyara BDP'ê derbarê dawetan:

## Sê roj dirêj e, bibe yek roj

**Colemêrg (Rûdaw)-** Şaredariya bajarê Colemêrgê ya BDP'ê hefta borî ligel rêvebirên bajêr û serokên eşîran civînek gel lidarxist û di civînê de pirsgirêkên herêmê nirxandin. Serokê Şaredariya Colemêrgê Fadil Bedirhanoglu di axaftina xwe de mijarên wek dîlan, taziye, qumar, fuhuş û dijbertiya di nava eşîran de anî ziman û got ku, "Bajarê me ji eşîrtiyê pir kişandiye, divê pirsgirêkên biçûk nebin sedemê dijimantiya di navbera eşîran de." Bedirhanoglu şahiya dîlanan ku sê roj didome rexnekir û xwest ku wek li herderê cîhanê dîlan di yek rojekî de bên lidarxistin."

Civîna ku li salona Şaredriya hekarî hat lidarxistin û 500 kes tevlî bûn, bi beşdariya rêvebirên BDP'ê, rayedarên olî, esnaf, hunermedên herêmî û serokên eşîran bû wek civînek gelerî. Serokê Şaredariya Hekkari Fadil Bedirhanoglu axaftina destpêkê kir û gotinê anî ser orf û edetên herêmê û pirsgirêkên bajêr: "Orf û edeten baş jî hene, yên ne baş jî hene. Em dibêjin dema ku du zarok şer dikin bila ev nebe sedemê şerê du malbatan. Hinek edetên me dibin pirsgirêkên mezin. Mînak dijbertiya di navbera eşîran de. Herwiha dîlanên me jî xweş in, lê jiber ku sê roj didomin, xwediyê dîlanê jî dikevin tengasiyê, cîran jî, mêvan jî. Bila dîlan ji niha û pêve wek herderê cîhanê yek roj bên şahîkirin."

**Robîn Botî** Stenbol

Hinek ji bo Stenbolê dibêjin, bajarê herî mezin ê Kurdan; hinek navê "Kurdistan-bul" lê dikin. Ji ber ku hejmara Kurdên li Stenbolê li gora hin texmînan heta 4-5 mîlyonî heye. Gelek ji wan bûne xwedî cihên dewlemend û hukmê jiyana Stenbolê dikin.

Yek ji wan kesan jî Umît Sevîlgen e ku li ser kolana naskirî ya Îstîklala Stenbolê xwediyê Kafe Ada ye. Kesên ku Taksîmê nas dikin, sedîsed Kafe Adayê xweş nas dikin. An li wir rûniştine çayek, qehweyek vexwarine, an jî ji wir pirtûkek kovarek kirîne, an jî di ber re derbas bûne. Her wiha gelek nivîskarên navdar jî li wir rojên îmzeyê li dar dixin.

Umît Sevîlgen berî 18 salan wekî bi mîlyonan Kurd mecbûr maye ku dev ji gundê xwe yê Sêrtê berde û berê xwe bide Stenbolê. Ji wê rojê û pê ve li Stenbolê hema bêje hemû kar û barî kiriye. Ji karên xwe pereyên baş jî qezenc kiriye. Lê xwestiye ku êdî piçekî karekî 'rihet' û astbilind bike. Lewma Kafe Ada standiye; niha li Kafe Ada di nava sosyeta Stenbolê de hem pere qezenc dike, hem jî di nava pirtûk û kovaran de wextê xwe yê mayî derbas dike.

### "Ez naxwazim ku li Stenbolê bimirim"

Di nava kar û barê jiyanê de carna dikeve nava kul û xeman û gelekî bêriya gundê xwe dike. Dixwaze xwe zûka ji Stenbolê bişo û dîsa bibe şivanê çend karik û bizinan. Derdê Umît bi pirsên me ve zêdetir dibin, "Tu dibêjî qey em bi kêfa xwe li vir in, na. Stenbol hemû zêr be jî em dizanin ne ya me Kurdan e. Lewma ez naxwazim ku li Stenbolê bimirim. Kengî be jî em ê vegerin gundê xwe..."

Li Stenbolê zêde tişt dilê wî xweş nakin, lê dibêje ku dema turîstek tê Kafe Adayê û ji wir pirtûkên Ehmedê Xanî yên bi îngilîzî dixwazin ew dike ku bifire, "Hingê ez dibêjim, ev têkoşîna me Kurdan di avê de neçûye. Lê mixabin pirtûkên Kurdan yên bi îngilîzî gelek kêm in..."

### Aynûr û Şivan ji hêla Tirkan ve pir tên gohdarîkirin

Li Kafe Adayê herî zêde pirtûkên Yaşar Kemal, Elîf Şafak û Dan Brown têne firotin. Herwiha kasetên Aynûr û Şivan ji hêla Tirkan ve pir têne kirîn, "Jixwe niha kurdî gelek popûler bûye, gelek kes dixwazin mûzîka kurdî guhdarî bikin. Bi vî awayî dixwazin piçekî deng û rengê me Kurdan nas bikin. Helbet em jî bi vê yekê kêfxweş in..."

### "Dîtina welat xweziya me ya herî mezin e!"

Daxwaza Umît ew e ku bi kêmanî salekê carekê biçe gundê xwe û nas û dostên xwe bibîne, bêriya xwe ya welêt bişkêne, "Dîtina welat xweziya me ya herî mezin e!"

Ew gelek caran rastî hin mûşteriyên xwe tê ku sosyete ne, lê li ser masayên xwe jî bi kurdî dipeyîvin, "Dema ku dibînin ku ez jî Kurd im pir kêfxweş dibin. Germahiyek mezin di navbera me de çêdibe. Belkî ne kesên polîtîk in, lê hay ji koka xwe hene..." Kafe Ada niha dixwaze berê xwe mezintir bike û li hin derên din jî şaxên xwe veke. Ew li ser kolana Îstîklalê bi çay û xwarinên xwe yên xweş ve li benda mûşteriyên nû ye.

**Tendirustî**

# Guh


Dr. Gulnaz Demirtaş*

Anatomiya guh ji mertala guhê derve, guhê navîn û guhê hundirîn ve pêk tê. Mertala guh bi giranî ji kirîkê dikeve hundir û derve bi awayekî elastîk çêdibe. Coka guh a derve ji mertala guh heta zarê guh diçe. Fizyolojiya bihîstinê ji pêlê deng bi aliyakariya metala guh di coka guhê derve de tê komkirin û ji zarê guh re tê şandin. Bi livandina zarê guh hestikên guhê navîn wê ronbûnê digihine pêla ku jêre dibêjin kokleya salyangoz organa herî bi muye ji hucreya potansiyelê hişyariyê çêdike. Ji turenasiyên guhdar kirinê dest pêdike û bi coka guhê hundirîn û kûrbûna serê nîvî digihî mejiyê gohdar kirinê.

**Têkiliya guh û kîjan organa bi hevre heye?**

**Dr. Gulnaz Demirtaş:** Guh, bêvil û qirik bi anatomiya xwe bi hev re girêdayî ne. Bi taybetî bêvil bi Tuba Eustachius re girêdayî ye û Tuba Eustachius piştî bêvilê dest pêdike û diçe herdu guhan. Herwiha luleya bêvilê digihê luleya qirikê.

**Çi nexweşî li guh derdikevin?**

Nexweşiyên wek otitis media dema ku av dikeve pişt perda guh hingê jî guhê navîn zerarê dibîne,ji wê re otitis media te gotin. Wekî din jî wexta yek bi zekimê bikeve û ava bêvila wan zêde dibe ew av bi Tuba Eustachius digihê guhan. Wê demê êşandina guh çêdibe û yek kêm dibihîze. Dema ku nexweşiya otitis bi zarokê biçuk re çêdibe wê demê ji bo zarokan hînbûna ziman gelek zahmet dibe.



Zarê guh Coka guhê derve

**Dermanê vê nexweşiyê çî ye?**

Dermanê wê ava xwê ye, dibe ku ava xwê di bêvila xwe de werdin. Lê eger zû baş nebe pêwîstî bi ameliyatê tê dîtin.Ji ber em neçar in ku borîkê em bi rêya ameliyatê ya perda guha biçuk bikin. Ev borî dihêle ku ew av ji guhê navîn derbikeve. Sedemek din jî ya dihêle otîtis media çêbibe hehe.

**We bahsa guhê hundir kir lê nexweşiyên guhê derve jî hene ev çi ne?**

Belê di guhê derve de jî nexweşî çêdibin. Guhê derve bi piranî idap digre. Bi taybetî jî bi kesê ku nexweşiya şekir bi wan re hene, çêdibe. Paqijkirina guh bi darikê guh qet ne baş e. Ew darik zirarê didin hundirê guh û birînê biçuk çêdikin ev yek jî dibe sedema idap girtina guh. Û dermanê wê jî tenê dilopa ku antibiotîka tê de heye. Pêşniyara min bila guhê xwe bi darika paqij nekin, berî razin du dilopê runê ji bo zarokan bila berdine guhê xwe. Roja din dikarin tenê binê guhê xwe bi avê bişon. Ji ber di encama tevgera ne rast guh nexweş dikeve mînak ji paqijkirina şaş û li cihê avjeniyê girtina bakteriya an jî vîrusa dibe sedema nexweşiyên guh. Dibe bi awayekî pir baldar li guhê xwe miqatebin.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

---

** Dr. Gulnaz Demirtaş ji Bakurê Kurdistanê ye. Niha li Holanda dijî. Bijîşka Guh, Bêvil û Qirikê ye.*

# Petrola Teqteq şampanya ye

"Heta niha zeviya petrolê ya Teqteq nêzîkî 12 milyon bermîlan berhem anîne û tê pêşbînîkirin ku 2 milyar bermîlên petrola yedek jî tê de mabin"



**Tracy Shelton** Teqteq

Petrola Teqteq wek "şampanya ya pîşesaziya petrolê" tê naskirin. Petrola Teqteq ji corê baş e û niha ev zeviya bîrên petrolê bûye yek ji baştirîn zeviyên petrolê li seranserê cîhanê.

Ji bo dîtina xelkê wê navçeyê û bandora vê pîşesaziyê li ser jiyana wan a rojane, hefteya borî di gel pisporê petrolê û avakerê zeviya bîrên petrolê, Umer Bendin, min serdana Teqteq kir.

Piştî em ji sinorê Hewlêrê derbasbûn, me da ser rêya Kerkûkê û ji nişkave awayê rê hat guherîn. Ji bo çend demjimêran me da ser rêyeke pir bi evraz, nişîv û toz, herwiha me çend nîşanên mînên çandî jî dîtin, lê dikaneke biçûk ku herçar aliyên wê bi daran hatibû girtin dilê me xweş kir.

Hemû gundên vê navçeyê di dema proseya Enfal a Sedam de hatibûn rûxandin û niha navçe hê rûxandî maye, tenê çend gundên biçûk hatine avakirin. Xwediyê wê dikanê, Sedîq Hemed yê 52 salî ku li gundê Şêwe Sûr jidayik bûye, di dema Enfalan de li gel malbata xwe reviyabû Îranê. Niha jî ji ber vedîtina petrolê û başbûna rewşa aborî ya navçeyê, mala Sedîq jî weke gelek malên din vegeriyabûn gundê xwe. Navborî got: "Zeviyên petrolê yên vir pir baş in." Lê Sedîq nîgeraniya xwe nîşan da ku ger hin zeviyên din yên petrolê li vê navçeya nêzîkî Kerkûkê bên dîtin, dibe ku Hikûmeta Bexda dest deyne ser wan û ji destê Kurdan û Hikûmeta Herêma Kurdistanê derxe.

Ji bo Endamê Civata Şaredariya Nahiya Şiwan, Osman Hesen, qezenca rasteqîne ya petrolê hê negihiştiye: "Ji dema ku petrol hatiye dîtin gundên navçeyê pere wernegirtine û hê zû ye, lê di dahatûyê de emê qezencên wê bibînin û hêdî hêdî tiştan pêşve bibin." Hesen herwiha daxuyand ku qezenca petrolê niha gihaye bajarên wan, lê piştî çend salên din wê bigihe gundên navçeyê jî.

Dema em nêzîkî zeviya petrolê ya Teqteq bûn, agirê petrolê ji dûr derdiket. Di nava kampê de nîşanên agahdariyê li her çar aliyên kampê hatibûn danîn û tê de nêzîka 250 karmendan hene, ji wan 40 biyanî ne.

Bîrên petrolê yên Teqteq rojane 60 hezar bermîlên petrolê berhem tînin. Li gor Rêvebirê Kargêrî yê Şîrketa Ttopco, Can Savon, ku şîrketeke hevbeş a Tirkî- Swêsrî ye û serperiştiya projeya deranîna petrola Teqteq dike, heşt bîrên petrolê li Teqteq hene ku heft ji wan nêzîka 7 hezar metroyan kûr in û ya heştem jî nêzîka 3500 metroyan kûr e.

Ji 14'ê Gulana 2006'an ku proseya berhemanîna petrolê destpê kiriye, vê zeviya petrolê nêzîkî 12 milyon bermîlên petrolê berhem anîne û tê pêşbînîkirin ku 2 milyar bermîlên petrola yedek jî tê de mabin ku nîvê wê bi kêrî deranînê tê. Savon dibêje kualîteya petrolê ewqasî baş e ku hinek di cîh de dixin tankeran bêyî ku bişînin rafînerê.

Di 11'î Hezîran a par de, di merasîmeke fereh de petrola Teqteq ket ser tora boriya petrolê ya niştîmanî ya Îraqê, lê piştî 4 mehan ji ber nakokiyên hikûmeta navendî û Hikûmeta Herêma Kurdistanê, boriyên petrolê hatin girtin. Ev nakokî hê jî nehatiye çareserkirin, lê Savon dibêje: "Divê petrol ji rafînerên navxweyî re sê qatan kêmtir ji buhayê firotina ji bo derve, bê firotin." Li gel wê yekê jî 26 şîrketên cuda girêbestên berhemanîna petrolê bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê re îmzekirine. Ji bo 16 gundên navçeyê rewş ber bi başiyê diçe. Li gor nobedarê kampê, Dilşad Kakil, bêtiriya gundiyan bi sedemê vê zeviya petrolê kar bidest xistine.

Çareseriya tendirustî û dabînkirina pêwîstiyên xwendingehê ji gundiyên navçeyê re, beşeke bernameya hevkariyê ya vê şîrketê ye, herwiha bîrên avê ji bo gundiyan kolane. Kakil dibêje berhemanîna petrolê ji bo gundiyên navçeyê karekî baş bû: "Bêtiriya xelkê vegeriyane ser gundên xwe û kar bidest xistine."

Piştî 25 xulekan em gihiştin cihê dagirtina tankeran ku bi rêzê rawestiyabûn ji bo bên dagirtin û ber bi rafîneran ve herin. Dema vegeriyanê jî em di nav gundan de derbas bûn, nîşana pêşkeftinê diyar bû, lê tenê dem dizane ka Kurd çiqasî qazanc ji dahata vê petrolê dikin û dahata wê jî çawa tê dabeşkirin.

# Ereb otomobîlan li Kurdistanê nahêlin



Kesên ji derveyî Kurdistanê û ji bajarên din ên Îraqê, otombîlên wan li Kurdistanê nayên qeyd kirin

**Arî Osman** Hewlêr

Rafid Kazim ê 41 salî ji bo kirîna otombîlekê ji naverast a Îraqê, bajarê Wasit hatibû Hewlêrê, ji ber otombîla ku wî dixwest ji xwe re bikire li Hewlêrê buhayê wê 14 hezar û 500 Dolare, lê li Wasit bi 19 hezar û 500 Dolariye. Rafid dibêje: "Otombîla ku li bajarê xwe dikirim garantî tune û xwediyê wê jî ne naskirî ye, lê yên Kurdistanê xwediyên wan diyar in."

Giraniya buhayê tabloya otombîlan li bajarên Îraqê, herwiha diyarnebûna xwediyên rasteqîne yên hejmareke zêde ya otombîlan û giraniya buhayê otombîlan bûye sedema ku her roj gelek Ereb serdana pêşangeh û şîrketên otombîlan li Hewlêrê bikin.

Pirsgirêka Rafid û bêtiriya Ereben ku ji bo kirîna otombîlan tên Kurdistanê, binavkirina otombîlan û standina jimareya Hewlêrê ye, Rafid dibêje: "Ger otombîl li ser navên me bên tomarkirin, ez piştrast im ku Ereb wê otombîlekê li bazarên Herêma Kurdistanê nehêlin."

Piştî hilweşîna rêjîma Sedam Hisên kirîn û firotina otombîlan li bajarên din ên Îraqê rastî pir pirsgirêkan hat, ji ber ku bêserûberiya polîsên trafîkê, zêdebûna hejmara otombîlên dizî û talankirî û anîna otombîlan ji derveyî Îraqê bi qaçaxî. Çekdarên radekal jî sûd ji vê tevlîheviyê dîtin û otombîlên bi vî rengî ji bo teqînan bikar tannîn." Xwediyê pêşangeha Ferheng li Hewlêrê, Kanebî Osman, dibêje her roj hevwelatiyên Ereb tên pêşangeha me û otombîlan dikirin. Kanebî di hefteyê de nêzîkî 6 otombîlan difiroşe Ereban û dibêje: "Ger ne ji ber binavkirinê be, rojane ezê dehan otombîlan bifiroşim Ereban."

Rêvebirê Ragihandina Trafîka Giştî ya Herêma Kurdistanê, Komîser Evdilqadir Sedîq, ji bo Rûdawê got: "Her hevwelatiyê rûniştvanê Kurdistanê dikare piştî kirîna otombîlê rasterast bi navê xwe tomar bike, lê kesên ji derveyî Kurdistanê yanî ji bajarên din ên Îraqê, otombîlên wan li Kurdistanê nayên qeydkirin." Derbarê Ereben ku li Kurdistanê dijîn, navbirî got: "Kesên ku mohleta wan a mayîna li Kurdistanê heye, dikarin bi rêya Wezareta Navxwe û asayişê daxwaz bikin ku otombîlên xwe binavê xwe qeyd bikin û ger mohlet wergirtin, em jî karên wan cîbicîh dikin."

Hatina otombîlên hilgirên tabloyên bajarên Kurdistanê ji bo Herêma Kurdistanê di xalên kontrolê de asantir e ji otombîlên hilgirên tabloyên bajarên din ên Îraqê, lê Rafid diyar dike ku ti cudahî tune, "li xalên kontrolê heman lêkolînê li gel me dikin."

Derheqê bandora firotina otombîlên hilgirên tabloyên bajarên Kurdistanê ji bo Ereban li ser rewşa ewlekariya Kurdistanê, Wekîlê Wezareta Navxwe, Fayiq Tofîq, diyar dike ku ev yek bandorê li ser rewşa ewlekariya Kurdistanê nake: "Ji ber xalên kontrolê yên Herêma Kurdistanê pir tund in û her otombîleke ku derbasî Kurdistanê dibe tê testkirin. Ger guman li siwarên otombîlê jî bê kirin, lêkolîn li gel wan tê kirin."

Li gor îstatîkên Rêvebiriya Giştî ya Trafîka Herêma Kurdistanê, heta roja 20'ê Nîsan a îsal, 501818 tabloyên jimareyan ji bo otombîlên taybet, teksî û barhilgir hatine dayîn: Li Hewlêrê 261300, li Silêmaniyê 137552 û li Duhokê 102966 tablo. Buhayê tabloyan li gor jimara piston û mezinbûn û biçûkbûna otombîlane, wek mînak tabloya otombîlên qemere bi 800 hezar Dînariye û pickup jî di navbera 2.5-3 milyon Dînariye. Erzaniya buhayê tabloya otombîlan li Kurdistanê sedemke din a kirîna otombîlane ji aliyê Ereban.

Hesen Casim xelkê bajarê Hîlle ye û ji bo kirîna otombîlekê hatiye Kurdistanê: "Li Kurdistanê tabloya otombîlê bi milyon Dînariye, lê li ba me bi 4 milyonaye. Loma li Kurdistanê otombîlan dikirim. Li vir em ji xwediyên otombîlan piştrast in, lê li bajarên din ên Îraqê xwediyên otombîlan ne naskirî ne."

